**تت كرى:** دەرئێخستى، دابەرزاندى، لێ خورى، هەرماندى، بوس كرى

(المطرود، الموبخ)

**Titkirî:** Derêxistî, daberzandî, lêxurî, herimandî, buskirî.

**تتى، تتيياتى:** دەركرنى، هاژوتنى، لێ خورينى، هەرمياتى، بوسياتى

(الطرد، الزجر، النبذ، الوبخ، التحريم، التحقير)

**Titî= Titîyatî:** Derkirinî, hajotinî, lêxurînî, herimayatî, busîyatî.

**تحا:** دبێژن قورێت بەرا يێت ئاڤا بارانا تێدا دمينيت، ئو مروڤ ئاڤێ ژێ ڤەدخون

(الوقب، الثمد، الوابه، الوقيره، الجب،، القف،، الردهه)

**Tiha:** Dibêjn qurêt bera yêt ava barana têda dimînît, û mirov avê jê vedixon.

**تحنى:** حەمەر، تنگژى، مەندبوى، رەپژى، داى پاش، تێربوى

(النفران، المشون، المصمئل، الداغص)

**Tihnî:** Hemer, tingijî, mendbûy, repijî, daypaş, têrbûy.

**تحنياتى:** حەمەرى، تنگژين، مەندبون، رەپژين، دان پاشى، تێر بون

(النفر، الشحناء، الاصمئلال، الدغص)

**Tihnîyatî:** Hemerî, tingijîn, mendbûn, repijîn, danpaş, têrbûn.

**تخ تخ، تخه:** بهاڤێژه دەرڤه ژ دەڤێ خوە، نەكە

(امر للطفل برمى ولفظ ما فى فمه)

**Tixtix = Tixe:** Bihavêje derve ji devê xwe, neke.

**تخ:** وەک بێژن، پاتوسێ تخى، شولەكا تخه

(كنايه عن العظمه والكفاءه)

**Tix:** Wek bêjin, pa tu yê tixî, şoleka tixe.

**تخويب:** سينور، شار، گڤانده، مەرز

(الحد، الطور، الحدود)

**Tixwîb:** Sînor, şar, givande, meriz.

**تدارەک:** خەملين، تڤتڤين، پەرلاقى، گوگراندن

(الزينه)

**Tidarek:** Xemlîn, tivtivîn, perlaqî, gogirandin.

**تدارەک بون:** خەمل بون، تڤتڤاندن، پەرلاق بون، گوگرين

(التزين)

**Tidarekbûn:** Ximilbûn, tivtivandin, perlaqbûn, gogirîn.

**تدارەک بوى:** خەملى بوى، تڤتڤاندى، پەرلاق بوى

(المزين)

**Tidarekbûy:** Xemilîbûy, tivtivandî, perlaqbûy.

**تدارەكتر:** خەملى تر، تڤتڤاندى تر، پەرلاق تر، گوگراندى تر

(الازين)

**Tidarektir:** Xemlîtir, tivtivandîtir, perlaqtir, gogirandîtir.

**تدارەک كرن:** خەملاندن، تڤتڤاندن، پەرلاق كرن، گوگراندن

(التزيين)

**Tidarekkirin:** Xemlandin, tivtivandin, perlaqkirin, gogirandin.

**تدارەک كرى:** خەملاندى، تڤتڤاندى، پەرلاق كرى، گوگراندى

(المزين)

**Tidarekkirî:** Xemlandî, tivtivandî, perlaqkirî, gogirandî.

**تدارەكى، تدارەكياتى:** خەملاندياتى، پەرلاقى، تڤتڤاندى، گوگراندنى

(الزينه)

**Tidarekî = Tidarekîyatî:** Xemlandîyatî, perlaqî, tivtivandî, gogirandî.

**تر:** ئالاڤێ چێتربێ يە، چاكترى

(فى اخر اللفظ يدل على التفضيل كما ويعطى معنى الاخر)

**Tir:** Alavê çêtirîyê ye , çaktirî.

**تر:** زرچ، پڤ

(الضرط)

**Tirr:** Zirç, piv.

**ترترى:** پڤ پڤى، زرچ زرچى

(الضراط)

**Tirrtirrî:** Pivpivî, zirçzirçî.

**ترپيلا:** فەقيرێ دل ماقويل، ژارێ دل مەزن، بەلنگازێ خوە نەنياس، ژپێ خوە دەركەتى

(كنايه عن العجرفه الجوفاء)

**Tirrpîla:** Feqîrê dilmaqwîl, jarê dil mezin, belingazê xwe nenyas, ji pê xwe derketî.

تر ترک: بوریکازاد تیدا خار دکەفیت، پوتکا گەیویێ بو گەمشێ

(البلعوم، المرئ)

**Tirrtirrk:** Borîka têda xar dikevît, putka geywîyê bo gemşê.

تر ترک: چف، قون، سووریچک

(الشرج)

**Tirrtirrk:** Çiv, qûn, sorîçk.

ترترک: دبیژن دوزەخێ، ناڤێ جەهنەمێ یە

(كناية لجهنم، السعير)

**Tirrtirrk:** Dibêjin dozexê, navê cehenemê ye.

ترتر: چیق چیق، تیک تیک، پەق پەق

(المشقوق)

**Tirrtirr:** Çîqçîq, tîktîk, peqpeq.

تر تر: گەف وگور

(التهديد، الوعيد)

**Tirrtirr:** Gef û gurr.

تر توق: بتنێ، ئێک سەر هاتن

(راسا، مفردا)

**Tir toq:** Bitinê, êkser hatin.

ترترە: تەخلیتەکێ تەیرایە، توخمەکێ مێش ومورایە

(صنف من الطيور، واسم لحشره)

**Tirrtirre:** Texlîtekê teyraye, tuxmekê mêş û moraye.

تر ترەیی: دفن بلندی، سەرگەرمی، سەرسکی، دل ئاڤایی

(الغطرسه، التكبر)

**Tirrtirreyî:** Difin bilindî, sergermî, serskî, dilavayî.

ترار: کودک، ئامانێ ڤەخارنا ئاڤێ

(الصواع، الطاسه، القحف)

**Tirar:** Kodik, amanê vexarna avê.

ترپ ترپ، ترپێن: دەنگێ وەرهانا تشتێ گران وبسەنگ، پێژنا پێیا، دەنگێ پێ پێ قوتێ

(اللدم، صوت سقوط الشيء، وصوت وقع الاقدام)

**Tirptirp = Tirpên:** Dengê werhana tiştê giran û biseng, pêjna pêya, dengê pêpê qutê.



ترچ: رازان، تەلاشی بون، خوە بەردی رانان، کەتن

(الرقود، الرقده)

**Tirrç:** Razan, telaşîbûn xwe bi erdî ranan, ketin.

تر چماق: گەوری خر، قورباجە

(الخناق، الذبحه الصدريه، النكاف)

**Tirrçimaq:** Gewrîxirr, qurbace.

ترچەدین: بەیتەشە، هەلەدین، باهێلە، هێر، گەوشەک

(الاهبل، الابله، السفيه)

**Tirrçedîn:** Beyteşe, heledîn, bahêle, hêrr, gewşik.

ترچە دینی: بەیتەشەیی، هەلەدینی، باهێلەیی، هێریاتی، گەوشەکی

(الهبل، البلاهه، السفه، البله)

**Tirrçedînî:** Beyteşeyî, heledînî, bahêleyî, hêryatî, gewşikî.

ترخان: قەلەو، تەفقی، تێروتژی، تەروتول

(الابتع، البض، البدين، السمين)

**Tirxan:** Qelew, tefiqî, têr û tijî, terûtol.

ترخانی: قەلەوی، تەروتولی، تێروتژی، تەفقین

(البتع، البضه، السمن، البدانه)

**Tirxanî:** Qelewî, ter û tolî, têr û tijî, tefiqîn.

ترخان ی کرن: قەلەوکرن، تەفقاندن، تێروتژی کرن، تەرو تول کرن

(التحضير، التاسيس، التشكيل)

**Tirxankirin:** Qelewkirin, tefiqandin, têr û tijîkirin, ter û tolkirin.

ترخین: شلاترش یا بکەلەم چیچا ترشی، شلا گارسی یا ترشی

(الرضيخ ادام يؤتدم به)

**Tirxîn:** Şilatirşî ya bi kelem çîça tirşî, şila garisî ya tirşî.

ترە دین: باهێلە، بەیتەشە، هێر، هەلەدین، گەوشەک

(السفيه، الاهبل، الابله)

**Tirredîn:** Bahêle, beyteşe, hêrr, heledîn, gewşek.

ترەدینی: باهێلەیی، بەیتەشەیی، هێریاتی، گەوشەکی

(السفاهه، الهبل، البلاهه، البله)

**Tirredînî:** Bahêleyî, beyteşeyî, hêrratî, gewşekî.

**ترارێ سەری:** تاسێ سەری، کودێ سەری

(قحف الرأس)

**Tirarêserî:** Tasê serî, kodê serî.

**ترازی:** ئامویرێ کێشانا تشتی، کێشەک

(القسطاس، الميزان)

**Tirazî:** Amwîrê kêşana tiştî, kêşek.

**ترازی:** قومرتەکا ستێرایە لئەسمانی بڤی ناڤی

(مجموعه نجوم تسمى الميزان ايضا)

**Tirazî:** Qomirteka stêraye li esmanî bivî navî.

**ترازینک:** ژەنینا لەشی، پوتی بونا لەشی

(الاختلاج الجسمي من الخدر)

**Tirazînk:** Jenîna leşî, pûtîbûna leşî.

**ترازینکێت ئەزمانی:** ژەنینا ئەزمانی ژبەر تشتێ تیژ

(الحذوق، للسان)

**Tirazînkêt ezmanî:** Jenîna ezmanî ji ber tiştê tîj.

**ترس، طرس:** سەهم، گژین، بسەریداچون

(الخوف، الذعر، الفزع، الهول، الفرق، الهلع، الرعب)

**Tirs:** Sehim, gijên, bi serî daçûn.

**ترس ترسوک:** قون فرەه، کولەک بەش، بێ فرێت

(المصوع، الخواف)

**Tirstirsok:** Qûnfireh, kulekbeş, bêfirêt.

**ترسنوک:** هەلەپە

(الكع، الهياب، الوجل، الجبان، الرعديد)

**Tirsinok:** Helepe.

**ترسا خودێ:** بیرهاتنا خودێ، هزرا خودێ

(التقوى)

**Tirsa Xudê:** Bîrhatina Xudê, hizra Xudê.

**ترسا دلی:** دل قوتکا ترسێ

(الوجس، الوجف)

**Tirsa dilî:** Dilqutka tirsê.

**ترسای:** هەلەپەبوی، سەهم گرتی، جنقی، ڤەجنقی

(الخائف، المستفز)

**Tirsay:** Helepebûy, sehimgirtî, ciniqî, veciniqî.

**ترسان:** هەلەپەبون، سەهم گرتن، دل قوتان

(المخافه، الهيبه، الرعب)

**Tirsan:** Helepebûn, sehimgirtin, dilqutan.

**ترساندن:** هەلەپەکرن، جنقاندن، سەهماندن

(الاخافه، الاستفزاز، الوجل)

**Tirsandin:** Helepekirin, ciniqandin, sehimandin.

**ترش، طرش:** دژی شرینی یێ، مز

(الحامض)

**Tirş:** Dijî şirînîyê, miz.

**ترشوک:** گیایەکە یێ ترشە بخاڤی دخون

(الحماض، نبات برى يؤكل طريا)

**Tirşok:** Gîyayeke yê tirşe, bixavî dixon.

**ترشوکا کەرا:** گیایەکێ ئاڤی یە ئەردێ کول وکێم گرتی دەردکەت دەرمانێ راداناکێم وزوخاژ کولیێ

(الهندباء، الحماض المائي)

**Tirşoka kera:** Gîyayekê avîye erdê kul û kêm girtî derdiket dermanê radana kêm û zuxa ji kulîyê.

**ترشبون:** ترفتنا هەڤیری، پەرچفتنا هەڤیری

(التحمض، التخمر، التنخ)

**Tirşbûn:** Tiriftina hevîrî, perçiftina hevîrî.

**ترشبوی:** هەڤیرێ ترفتی

(المختمر، المتحمض)

**Tirşbûy:** Hevîrê tiriftî.

**ترشتر:** پتر ترش، پتر ترفتی، ترفتی تر

(الاحمض، الاخمر)

**Tirştir:** Pitir tirş, pitir tiriftî, tiriftîtir.

**ترش کرن:** ترفاندن

(التحميض، التخمير)

**Tirşkirin:** Tirifandin.

**ترش کری:** ترفاندی

(المحمض، المخمر)

**Tirşkirî:** Tirifandî.

**ترشی، ترشیاتی:** تاما دەڤی دگەزیت

(الحموضه)

**Tirşî = Tirşîyatî:** Tama devî di gezît.

**ترشک:** کوتلکێت بترش کەلاندی، خارنەکە

(الكبه الحامضه، طبيخ)

**Tirşik:** Kutilkêt bi tirş kelandî, xarneke.

**ترفتن:** ترش بونا هەڤیری وتشتێت وەکی وی
(التخ، للعجين، ونحوه)
**Tiriftin:** Tirişbûna hevîrî û tiştêt wekî wî.

**ترفتی:** ترش بوی
(التاخ، المختمر)
**Tiriftî:** Tirişbûy.

**ترەقین:** دەنگێ بژکینا بەرکێت توب و قونبەلایە، دەنگێ ڤێک کەتنا تشتێ هشک ورەقە
(صوت الانفجار، صوت اصطدام، صلب بصلب)
**Tireqên:** Dengê bijikîna berkêt top û qunbelaye, dengê vêkketina tiştê hişik û reqe.

**ترەقین:** کەنیێ بلند، کەنیێ ژ حێل دەنگ بدەت
(القهقه، صوت الضحک العالی)
**Tireqên:** Kenyê bilind, kenyê ji hêl deng bidet.

**ترەقاندن:** کەنیێ بلند، کەنیێ ژ حێل دەنگ بدەت التقهقه
**Tirreqandin:** Kenyê bilind, kenyê ji hêl deng bidet.

**ترەقاندن:** راتەقاندن، رەڤاندی، راقەتاندن
(الاهزام، الهرب من الخوف)
**Tirreqandin:** Rateqandin, revandî, raqetandin.

**ترەقین:** هاڤی بون، لدویڤ سەرێ خوەچون، باژێلەبون، راقەتان، راتەقان، رەڤین
(الهيام، الهروب من الخوف، الضلال)
**Tireqîn:** Havîbûn, li dwîv serê xwe çûn, bajêlebûn, raqetan, rateqan, revîn.

**ترکەن:** پڤ کەن، زرچو
(الضراط)
**Tirrken:** Pivken, zirço.

**ترک:** زروکە، هەژ، شڤ، چیلک
(السنف، عود مجرد من الورق)
**Tirrik:** Ziroke, hej, şir, çîlik.

**تروزی:** توخمەکێ فیقی یە وەکی خیاری
(القثاء)
**Tirozî:** Tuxmekê fêqîye, wekî xîyarî.

**ترۆکە:** کەتوەر، کەرچوڤە، پێزەڤەنگ
(الصلف، الاحمق)
**Tirroke:** Ketwer, kerçove, pêzeveng

**تراش:** لوچ کرنا مویا، حوچ کرنا پرچێ، روال کرنا پرچێ
(الحلق، قص الشعر)
**Tiraş:** Loçkirina mwîya, hoçkirina pirçê, riwalkirina pirçê

**تراشین:** لوچ کرن، حوچ کرن، روال کرن
(الايساء، الحلق)
**Tiraşîn:** Loçkirin, hoçkirin, riwalkirin

**تراشتن:** موی لوچ کرن، موی روال کرن، موی قەفاندن، پرچ حوچ کرن
(التحليق، التنميت)
**Tiraştin:** Mwî loçkirin, mwîriwalkirin, mwî qefandin, pirçhoçkirin

**تراشتن، تراشین:** ڤەرەنین، گوگراندن، دابرین
(النحت)
**Tiraştin = Tiraşîn:** Verenîn, gogirandin, dabirîn.

**تراش:** دەحل، دار وبارێ هویر، بیش، دەحل ودر
(الاحراش، الاحراج)
**Tirraş:** Dehil, dar û barê hwîr, pîş, dehil û dirr.

**تراشوک:** داروبارێ هاجروک، لوینگلک، گوینگلک
(الشجره، الشجيرات)
**Tirraşok:** Dar û barê haçirok, lwîngilk, gwîngilk.

**ترەماش:** تشتێ پویچ، تشتێ چونە
(الفهم الناقص، الشیء التافه، الجهل)
**Tirremaş:** Tiştê pwîç, tiştê çune.

**ترمبێل:** گیزگیزوک
(السياره)
**Tirimbêl:** Gîzgîzok.

**ترانە:** گەلتە، مەسخەرە، یاری
(الهزء، الطنز، المزاج، الفکاهه، الهزل، السخريه)
**Tirrane:** Gelte, mesxere, yarî.

**ترانەکەر:** گەلتەچی، مەسخەرچی، یاری کەر
(الطناز، الهزلی، المازح، الفکه، الساخر، الهازئ)
**Tirraneker:** Gelteçî, mesxerçî, yarîker.

**ترانه پێ کرن:** گەلتە پێ کرن، مەسخەرە پێ کرن، یاری پێ کرن

(الاستهزاء، السخریه)

**Tirranepêkirin:** Geltepêkirin, mesxere pêkirin, yarî pêkirin.

**ترانەکرن:** یاری کرن، گەلتەکرن، مەسخەرەکرن

(المزاح، المازحه)

**Tirranekirin:** Yarîkirin, geltekirin, mesxerekirin.

**ترنجوک:** گییایەکی ئاڤی یە بێ بێهندارە، بێهنا وی وەک ترنجێ یە

(نبات معطر)

**Tirincok:** Gîyayekî avê ye yê bêhindare, bêhnawî wek tirncêye.

**ترنگێن:** تەرتەرە

(الاشاعه، التواتر، الضجه، الشائعه)

**Tiringên:** Tertere.

**ترنگێن، تنگێن:** دەنگێ ئاسنی یە، زنگێن

(الرنین)

**Tiringên = Tingên:** Dengê asinîye, zingên.

**تری:** فێقییێ مێوێ یە

(العنب)

**Tirî:** Fêqîyê mêwêye.

**تریێ رەش:** توخمەکێ تریێ رەشە

(الوین)

**Tiryêreş:** Tuxmekê tiryê reşe.

**تریێ زەر:** توخمەکێ تریە

(الناهر)

**Tiryêzer:** Tuxmekê tirîye.

**تری رویڤک:** گییایەکە هندە دنکێت سوور ددەت دەرمانێ وەرمین وپەرچڤتنا یە

(الفناه، الثلثان، عنب الثعلب)

**Tirîrwîvîk:** Gîyayek hinde dinkêt sor didet dermanê werimîn û perçivtinaye.

**ترياک:** گییایەکە پێ سەر خوەش دبن

(الافیون، التنباک)

**Tiryak:** Gîyayek pê ser xweş dibin.

**تریوکی:** سەرسەری، سەرسک، رکین، کزوکی، سل سلوک

(التیع، التیعان، القتب، سریع الغضب، المتهور، العصبی)

**Tiryokî:** Serserî, sersink, rikîn, kizokî, silsilok.

**تریوکیاتی:** رکینی، سەرسەریاتی، سەرسکی

(القتب، القتابه، التیع، التهور)

**Tiryokîyatî:** Rikînî, serserîyatî, sersikî.

**تژی:** گەلەک، پر، مشە

(الکثیر، الزاخر، الغزیر)

Tijî: Gelek, pirr, mişe.

**تژی:** مشت، رەپژی، هەبشی، پر، مەند، دارمال

(الملؤ، المکتظ، الحلسان، الغص، الطفاح، المفعم)

**Tijî:** Mişt, repijî, hebişî, pirr, mend, darmal.

**تژی بون:** گەلە بون، پر بون، مشەبون، رەپژین، مشت بون، مەند بون، هەبشین

(التکاثر، الامتلاء، الاکتظاظ، التحلس، التفعم، الغصص، الزخر، التطفح)

**Tijîbûn:** Gelebûn, pirrbûn, mişebûn, repijîn, miştbûn, mendbûn, hebişîn.

**تژی بوی:** گەلەبوی، پربوی، مشەبوی، رەپژی بوی، مشت بوی، مەندبوی، هەبشی بوی

(الملیء، المفعم، المکثر، المکتظ، الطافح، المحلس)

**Tijîbûy:** Gelebûy, pirrbûy, mişebûy, repijîbûy, miştbûy, mendbûy, hebişîbûy.

**تژی تر:** گەلەکتر، پرتر، مشەتر، رەپژی تر، مشت تر، مەندتر، هەبشی تر

(الاکثر، الاملاء، الاکظظ، الاطفح، الازخر)

**Tijîtir:** Geletir, pirrtir, mişetir, repijîtir, mişttir, mendtir, hebişîtir.

**تژی کرن:** گەلەکرن، پرکرن، مشەکرن، رەپژاندن، مەندکرن، هەبشاندن

(الاملاء، الاکثار، الازخار، التکضیض، الاطفاح)

**Tijîkirin:** Gelekirin, pirrkirin, mişekirin, repijandin, mendkirin, hebişandin.

**تژیکری:** گەلەکری، پرکری، مشەکری، رەپژاندی، مەندکری، هەبشاندی

(الملیء، المکثر، الکظظ، المفعم)

**Tijîkirî:** Gelekirî, pirrkirî, mişekirî, repijandî, mendkirî, hebişandî.

**تژیاتی، تژیاتینی:** گەلەکی، پریاتی، پژاندیاتی، مەندیاتی، پری، حەبشاندیاتی

(الكثره، الكظ، الملئ، الحلس)

**Tijîyatî = Tijîyatînî:** Gelekî, pirryatî, repijandîyatî, mendîyatî, pirrî, hebişandîyatî.

**تژی خوە بون:** تنگژین، بندڤین، دل ئاڤابون

(الاصمئلال، النفر، الغيظ)

**Tijîxwebûn:** Tingijîn, bindivîn, dilavabûn.

**تژی خوە:** تنگژی، بندڤی، دل ئاڤابوی

(النفران، المتعجرف، المغتاظ)

**Tijîxwe:** Tingijî, bindivî, dilavabûy.

**تستسک:** پڤدانک، میزمیزک

(المثانه)

**Tistisk:** Pivdank, mîzmîzk.

**تستسک:** ئاڤلدانک، پەقپەقوک، میزمیزک، ئاڤلەک، پەقویشک

(النبخ، النفطه، المجله، كيس الماء في الجلد)

**Tistisk:** Avildank, peqpeqok, mîzmîzk, avlek, peqwîşk.

**تشت:** ئاه

(الشيء، الماده)

**Tişt:** Ah.

**تشتانێ:** یارییەکا بچویکایە

(الاحاجی)

**Tiştanê:** Yarîyeka biçwîkaye.

**تشتاتی، تشتینی:** ئاهاتی، ئاهینی

(الشيئيه)

**Tiştatî = Tiştînî:** Ahatî, ahînî.

**تشتێ باش:** تشتێ نەدیتی، تشتێ سەر پشک

(الفاخر)

**Tiştêbaş:** Tiştê nedîtî, tiştê serpişk.

**تشتێ پویچ:** تشتێ پەروە

(السفاسف)

**Tiştêpwîç:** Tiştê perwe.

**تشتێ تیر:** کوسپە، لیتە، رەمودە، دردەم

(الكث، الثخين، الكثيف للسوائل)

**Tiştêtîr:** Kuspe, lîte, remode, dirrdem.

**تشتێ بێهندار:** بولین، بێهن خوەش

(العبق)

**Tiştêbêhindar:** Bolîn, bêhin xweş.

**تشت لێکدان:** هیرک، ستێرک، ڤەوژارتن

(الرثد، الارتثاد، النضد)

**Tiştlêkdan:** Hîrk, stêrk, vewijartin.

**تشابەت:** هەلامەت، مامک، کرێت، نەداروی

(الدميم، القبيح، الشنيع، الظيع، التمثال، الشبيع، الشبح)

**Tişabet:** Helamet, ma mik, kirêt, nedarwî.

**تشابەتی:** کرێتی، نەداروییاتی

(القبح، الدمامه، الشناعه، الفظاعه)

**Tişabetî:** Kirêtî, nedarwîyatî.

**تشتێ مروڤی:** ئاهێ مروڤی

(الملک)

**Tiştê mirovî:** Ahê mirovî.

**تشتێ ئنتیکە:** تشتێ پێشکێش

(الفلق)

**Tiştê intîke:** Tiştê pêşkêş.

**تشتێ کوتەک بهێت:**

(المهنا)

**Tiştê kutek bihêt.**

**تشتێ نویسەک:** تشتێ چر

(الفراء)

**Tiştênwîsek:** Tiştê çirr.

**تشو:** گازیە بوکەر و دەوار، یانی وەرە

(نداء الحمار)

**Tişo:** Gazîye, bo ker û dewara yanî were.

**تف:** گلیزا دەڤی

(البصاق، اللعاب، الريق)

**Tif:** Gilîza devî.

**تف کرن:** گلیز ژ دەڤی هاڤێتن

(البصق)

**Tifkirin:** Gilîz ji devî havêtin.

**تفسک:** هژیرێت کویڤی وبەیاری، هژیرێت چولی

(الطبار، التين البرى)

**Tifsik:** Hejîrêt kwîvî û beyarî, hijîrêt çolî.

**تڤر:** سلكەكا وەكى شێلمێ يە بزادى دخون

(الفجل)

**Tivir:** Silkeka wekî şêlimêye, bi zadî dixon.

**تڤرى:** ئاموێرەكە دنێخن گەوريا ئاشى، ئاشى ڤبادنێخيت

(العنم، آله للرحى)

**Tivrî:** Amwîreke di êxin gewrîya aşî, aşî vbadiêxît.

**تڤەنگ:** جان بێزار، ئاموێرى كوژتنێ يە

(البندقيه)

**Tiveng:** Canbêzar, amwîrê kujtinê ye.

**تڤەنگ خوەش:** كەسێ نيشان شكێن، ئارمانج شكێن

(الهداف)

**Tivengxweş:** Kesê nîşan sikên, armanc şikên.

**تڤەنگ خوەشى:** ئارمانج شكاندن، لێدانا نيشانێ، نيشان هنگاتن

(التهديف، الاستهداف)

**Tiveng xweşî:** Armanc şikandin, lêdana nîşanê, nîşan hingatin.

**تڤيرك:** تەيرەكێ وەكى كوترێ يە

(اليمامه، الفاخته)

Tivîrk: **Teyrekê wekî kotirêye.**

**تڤ تڤ:** دەنگێ داڤا گشته

(الفنان، صوت الوتر)

**Tivtiv:** Dengê davagişte.

**تڤ تڤ، تڤێن:** دەنگێ مێش وزركێتك وستێنگايە، بڤ بڤ

(الطنين، الزميم، الازير)

**Tivtiv = Tivên:** Dengê mêş û zirkêtk û stêngaye, bivbiv.

**تك:** پل لێدان

(النقر)

**Tik:** Pillêdan.

**تك تك، تكێن:** تەقا تەقا هێدى ونزم، چك چك، دەنگێ سەعەتێ يە

(صوت النقر، صوت الساعه)

**Tiktik = Tikên:** Teqteqa hêdî û nizim çikçik, dengê se'etêye.

**تل:** تبل، پەنج

(الاصبع)

**Til:** Tibil, penc.

**تلا بەرانا:** تبلا ئێكێ ژناڤدا

(الابهام)

**Tilaberana:** Tibla êkê ji navda.

**تلا شكەڤ ئاليسكێ:** تبلا دووێ ژ ناڤدا

(السبابه)

**Tilaşkevalîskê:** Tibla duwê ji navda.

**تلا ناڤێ:** تبلا نيڤەكێ

(الوسطى)

**Tilanavê:** Tibla nîvekê.

**تلا مام بەليچێ:** تبلا دووێ ژ دەرڤە

(البنصر)

**Tilamabelîçê:** Tibla duwê ji derve.

**تلا قليچێ:** تبلا ئێكێ ژ دەرڤە

(الخنصر)

**Tilaqilîçê:** Tibla êkê ji derve.

**تل قرمچى:** تبل چرچرى

(الاكتع)

**Tilqirmiçî:** Tibil çirçirî.

**تل قرمچين:** تبل چرچرن

(الكتع)

**Tilqirrmçîn:** Tibil çirçirin.

**تل كورت:** تبل پاشڤەماى

(الكزم، الاكزم)

**Tilkurt:** Tibil paşvemay.

**تل كورتى:** تبل پاشڤەمان

(الكزامه، الكزم)

**Tilkurtî:** Tibil paşveman.

**تلخە:** كوما بەفرێ يا ژبانێ دهاڤێژن، كوم

(الكدس، الكومه ويخص الثلج ونحوه)

**Tilxe:** Koma befrê ya ji banî di havêjin, kom.

**تلوڤە:** فێقيێ پێكڤە گرێدەدن ودهەلاويستن بو زڤستانێ تشتێ پێكڤە هەلاويستى

(النوط)

**Tilove:** Fêqîyê pêkve girêden û di helawîstin bo zivistanê, tiştê pêkve helawîstî.

**تلمسێ تری:** هندەک ژ نویشی، ژ نویشی کێم تر
(الشمل، الشنف)
**Tilmisê tirî:** Hindek ji iwîşî, ji iwîş kêmtir.

**تلێ گوشتی:** لمچا گوشتی، لمچابێ هەستی، گوشتێ بێ هەستی
(اللغنیە، البضعە، الهبر، لحم بلا عظم)
**Tilê goştî:** Limça goştî, limça bê hestî, goştê bê hestî.

**تلوڤێ گولیا:** کەفەکا گولیێت دەخلی پێکڤە گرێدای وهەلاویستی
(القبص)
**Tilovê gulya:** Kefeka gulyêt dexlî pêkve girêday û helawîstî.

**تلدای:** پالدای سەر تەنشتێ، حەبلی وگەلەک خار، مالق بوی
(الاکثم، المنطرف)
**Tilday:** Palday ser tenîştê, hebilî û gelek xar, maliq bûy.

**تلێ چییای:** ئالێ چییای، رەخێ چییای، تەنشتا چییای
(اللوذ، صفح الجبل)
**Tilê çîyay:** Alê çîyay, rexê çîyay, tenişta çîyay.

**تلپ:** پرتارەمودێ، فێقیێ گڤاشتی، گولومچکێت فیقیێ پەتشاندی
(الثفل، العصارە)
**Tilp:** Pirta remodê, fêqîyê givaştî, gulmiçkêt fêqîyê petişandî.

**تلیلی:** چیکێت داوەتی، چیکی ڤەدانا لناڤ داوەت وشاهیيا
(الزغرودە، ج زغارید)
**Tilîlî:** Çîkêt dawetî, çîkîvedana li nav dawet û şahyana.

**تل، طل:** تەنشت، تەنج، رەخ، ئال، لا
(الورک، الکشح، الجنب، الطرف، الجانب)
**Til:** Tenişt, tenc, rex, al, la.

**تلدان:** پالدانا سەر تەنشتێ، گەلەک خارن وحەبلین، مالق بون وپالدان
(التورک، المجانبە)
**Tildan:** Paldana ser tenîştê, gelek xarin û hebilîn, maliqbûn û paldan.

**تل رزی:** نەهاتی، علەدار، حەفنی، گەنی
(السقیم، المتفسخ)
**Tilrrizî:** Nehatî, 'iledar, hefinî, genî.

**تل رزیاتی:** نەهاتن، علەداری، گەنیاتی، حەفنوکییاتی
(السقم، التفسخ)
**Tilrrizyatî:** Nehatin, 'iledarî, genîyatî, hefnokîyatî.

**تلی:** کتاتری، لبەکاتری، لباتری
(العجد، حب العنب)
**Tilî:** Kita tirî, libeka tirî, liba tirî.

**تلویل وملویل:** گەوگەوک، عەجویج ومەچویچک، زاروکێت هویر
(العجایا، الاطفال الصغار)
**Tilwîlûmwîlîl:** Gewgewk, 'ecwîc û mecwîck, zarokêt hwîr.

**تل چاڤانێ:** شەڤ رەشە، تاریستان، وەکی مروڤ تبلا خوە لبەر چاڤێ خوە نەبینیت
(الطاخیە، شدە حلکە، الظلام)
**Tilçavanê:** Şevreşe, tarîstan, wekî mirov tibla xwe liber çavê xwe nebînît.

**تماشە:** بەرێ خوەدان، نێران، سەحکرن، تشتێ لبەرچاڤ، تشتێ پێش چاڤ
(المشهد، المنظر)
**Timaşe:** Berê xwedan, nêrran, sehkirin, tiştê liber çav, tiştê pêşçav.

**تماشە کرن:** بەرێ خوەدان، نێران، سەحکرن
(التفرج، المشاهدە)
**Timaşekirin:** Berê xwedan, nêrran, sehkirin.

**تم وتم:** هەر وهەر، هەتا هەر
(دائما، الی الابد)
**Timûtim:** Herûher, hetaher.

**تم تم، تمێن:** گوم گوم، حوت حوت، دەنگێ قوتانا دهوول و تشتێ خولوولە، دەنگ ڤەدانا لێدانا تشتێ ڤالا و خولوولە
(القرع، صوت الطبل ونحوە)
**Timtim = Timên:** Gumgum, huthut, dengê qutana dihol û tiştê xulole, deng vedana lêdana tiştê vala û xulole.

**تن:** وەک، گوتن، سووتن، ڤەڕوتن، هەلاتن، راکەتن
(اداه لاکمال المعنى تلحق فى اخر اللفظ)
**Tin:** Wek, gotin, sotin, verûtin, helatin, raketin.

**تنێ:** بەس
(فقط، بس)
**Tinê:** Bes.

**تنێ:** کت، فەر، ئێک
(الانفراد، الوحده)
**Tinê:** Kit, fer, êk.

**تنێ:** هەکە
(ولو، اذا)
**Tinê:** Heke.

**تنیاتی:** ئێکیاتی، کتینی، فەریاتی، ئێکینی
(الوحده، الوحدانیه، التفرد، الاستقلال)
**Tinyatî:** Êkîyatî, kitînî, feryatî, êkînî.

**تنێ:** خوری، تورسی
(الصرف، البحت، الصافی، الفذ، الشاذ، المستقل)
**Tinê:** Xurrî, tursî.

**تنگژین:** بندڤین، سل بون، تژی خوه بون
(التنق، المصمئلال، الدغص)
**Tingijîn:** Bindivîn, silbûn, tijîxwebûn.

**تنگژی:** بندڤی، سل بوی، داگرتی، تژی خوه
(المنتاق، التنیق، الداغص، المصمئل)
**Tingijî:** Bindivî, silbûy, dagirtî, tijîxwe.

**تنگ تنگ، تنگێن:** دەنگی ئاسنی، زنگ، زڕ زڕ
(الصلیل، الرنین، صوت الحدید)
**Tingting = Tingên:** Dengê asinî, zing, zirr-zirr.

**تی:** سوی، ئەردێ تەنگ وبلند، دەڤێ ئامویری، بستی، لێف
(الحید، الحرف، الحافه)
**Tî:** Swî, erdê teng û bilind, devê amwîrî, bistî, lêv.

**تی:** دەڤێ ئامویرێ دڕ وەک کێر وشیر وخەنجەرا
تیغ الآله کالیسف والسکین قرص، کالشمس)
**Tî:** Devê amwîrê dirr wek kêr û sîr û xencer.

**تی:** برایێ مێرێ ژنێ
(العدیل، اخ زوج المرأه)
**Tî:** Birayê mêrê jinê.

**تیپ:**
(حرف الکتابه)
**Tîp.**

**تیپ:** سەنتە، کێشە، ستێرە
(الاتجاه، السمت، الوجهه الشطر)
**Tîp:** Sente, kêse, stêre.

**تیپ:** ئووب، قوول
(فرقه، فئه، ثله، شرذمه)
**Tîp:** Ob, qol.

**تیت:** ناڤ چاڤ سپی، حەیوانێ، ناڤ چاڤ سپی، بەش
(الاغر، الغریر)
**Tît:** Navçav sipî, hêwanê, navçav sipî, beş.

**تیت:** نیشان، دوری، پنیا ناڤ چاڤا ژ رەنگەکێ دی
(الغره)
**Tît:** Nîşan, durî, pinya nav çava ji rengekê dî.

**تیتی:** ناڤ چاڤا سپیاتی
(الغره، الغریره)
**Tîtî:** Navçava spîyatî.

**تیتا دەوارا:** پنیاسپی لئەنیا دەوارا
(الزرق)
**Tîta dewara:** Pinya sipî li enya dewara.

**تی تەپ:** یانی کەند وکور، وەکی رویێ ئامانێ یێ تەپای بیت دێ بێژن ئەڤ ئامانە یێ تی تەپە
(المنحرف، سطح، متموج، او منکسر)
**Tîtep:** Yanî kend û kor, wekî, rwîyê amanî yê tepay bît, dê bêjin ev amane yê tîtepe.

**تیتیک:** توخمەکێ تەیرایە
(صنف من الطیور)
**Tîtîk:** Tuxmekê teyraye.

**تیتلک:** پرتە ژ قوزێ ژنا
(البضر)
**Tîtilk:** Pirte ji quzê jina.

**تیتالە:** هێجەت، چەپ دان، پیلان، بادانا ئاخفتنێ
(ذریعه، مراوغه، غش، حیله، احابیل، مبرر، عذر)
**Tîtale:** Hêcet, çepdan, pîlan, badana axiftinê.

تی تەپی: کەش بری، بەرخاری، نەراست و درستی لرویێ تشتی

(الانحراف)

**Tîtepî:** Kêş birrî, ber xarî, nerast û diristî li rwîyê tiştî.

تی یێ چییای: لێڤا چییای، بستیبا چییای، سویێ چییای

(الشتر، حرف الجبل، الحزب، الخرشوم)

**Tîyê çîyay:** Lêva çîyay, bistîya çîyay, swîyê çîyay.

تیر: شڤەکەیا سەر ئاسن بکڤانی دهاڤێژن بو کوژتنێ

(السهم، النبل، النشاب)

**Tîr:** Şiveke ya ser asin bi kivanî di havêjin bo kujtinê.

تیر: کوسپە، دوبە، تشتێ نە روهن ونە هشک، لیتە رەمودە پەلوی

(الكث، الثخين، الكثيف، اللهيد، للسوائل)

**Tîr:** Kuspe, dobe, tiştê ne ruhin û nehişk, lîte, remode, pelwî.

تیر بون: کوسپەبون، پەلوی بوی

(التثخن، التكثف، التكثث، التلهد)

**Tîrbûn:** Kuspebûn, pelwîbûn.

تیر بوی: پەلوی بوی، کوسپەبوی

(المكثف، المثخن، الملهد)

**Tîrbûy:** Pelwîbûy, kuspebûy.

تیرتر: پەلوی تر، کوسپەتر

(الاثخن، الاكثف، الاكث، الالهد)

**Tîrtir:** Pelwîtir, kuspetir.

تیر کرن: پەلوی کرن، کوسپەکرن

(التكثيف، التثخين، التلهيد، التكثيث)

**Tîrkirin:** Pelwîkirin, kuspekirin.

تیر کری: پەلوی کری، کوسپەکری

(المكثف، المثخن، الملهد)

**Tîrkirî:** Pelwîkirî, kuspekirî.

تیری، تیریاتی: پەلوییاتی، کوسپەیاتی

(الثخن، الكثافه، الكثاثه)

**Tîrî = Tîrîyatî:** Pelwîyatî, kuspeyatî.



تیرک: شەقلە، باسک، تیرە، چویڤێ گوروڤر و درێژ داربیت نان ئاسن

(القضيب، الاسطوانه، القطب)

**Tîrik:** Şeqle, basik, tîre, çwîvê girovir û dirêj çi dar bît an asin.

تیروک: شڤەکا داری یا گروڤر و درێژ نانێ تەنک لسەر خانکی پێ تەنک دکەن

(المرقاق، المطلمه، الصويج، المحلج، الفنيقه، المدمك)

**Tîrok:** Şiveka darî ya girovir û dirêj, nanê tenik li ser xankî pêtenik diken.

تیرەک: شەقلە، نیرە، زەندک، ژ کاریتەی زراڤ تر

(القضيب، الاسطوانه، القطب)

**Tîrek:** Şeqle, nîre, zendik, ji karîtey ziravtir.

تیر: رەنگێ تاری، شوربون ورەش بون لێکدانا ئەڤری

(غامق اللون، المكفهر للغيم ونحوه)

**Tîr:** Rengê tarî, şorbûn û reşbûn lêkdana evrî.

تیروژک، تیرروژک: سویلیا روناهیێ، گورزا تاڤێ

(الشعاع، السهم، حزمه ضوء الشمس)

**Tîrojk = Tîrrojk:** Swîlîya ronahîyê, gurza tavê.

تیرێژی: چیڤەکا پەروکی یازراڤ لما بەینا دو بەرێت پەروکی بدورین، چیڤەکێ ببەن دناڤ دوبەرێت پەروکی

(المسلكه من القماش)

**Tîrêjî:** Çîqeka perokî ya zirav li mabeyna du berêt perokî bidurîn, çîvekê biben dînav du berêt perokî.

تیرکا ئاسنی: شەقلکێ ئاسنێ، چویڤێ ئاسنی

(الشلف، القضيب)

**Tîrka asinî:** Şeqilkê asinî, çwîvê asinî.

تیمل، تیرمل: زینی، باسکێ چیای زینیا ژێهەل، بستیا سەر ئەڤراز

(النعف، الرعن، الانف الطويل من الجبل)

**Tîmil = Tîrmil:** Zînî, baskê, çîyay, zîniya jêhel bistîya serevraz.

تیربونا عەوری: لێکدان ورەش بونا ئەوری، قەرسینا عەوری

(الاكفهرار)

**Tîrbûna 'Ewrî:** Lêkdan û reşbûna ewrî, qerisîna 'wrî.

**تیرمێوک**: کاتێ مێوێ، شابوقا مێوێ، تایێ مێوێ، شاکا مێوێ

(السروغ، الزرجون، الحبل)

**Tîrmêwk**: Katê mêwê, şaboqa mêwê, tayê mêwê, şaka mêwê.

**تیر گێرک**: نانێ لسەر خانکی بتیروکێ تەنک دکەن، نانێ تەنک

(الخبز المرقق، المطلمه، الطلمه)

**Tîrgêrrk**: Nanê li ser xankî bi tîrokê tenik diken nanê tenik.

**تیرکا تەفنی**: شفەکێ داڤا تەفنێ دناڤ تایێت وێرا دئینن وبەن

(الملج)

**Tîrka tevnî**: Şiveka dava tevnê dinav tayêt wêra di înin û ben.

**تیرەمار**: توخمەکێ مارێت زراڤ ودرێژن ورەنگ زەرن

(السف)

**Tîremar**: Tuxmekê marêt zirav û dirêjin û reng zerin.

**تی زا**: بچویکێ برایێ مێرێ ژنێ

(ولد العديل ولد اخ زوج المرأه)

**Tîza**: Biçwîkê birayê mêrê jinê.

**تیزاب**: تیژاڤ

(الاسيد)

**Tîzab**: Tîjav.

**تیژ**: دژوار

(الحريف)

**Tîj**: Dijwar.

**تیژبون**: دژواربون

(التحرف)

**Tîjbûn**: Dijwarbûn.

**تیژبوی**: دژوار بوی

(المحرف)

**Tîjbûy**: Dijwarbûy.

**تیژتر**: دژوارتر

(الاحرف، الاشد حرافه)

**Tîjtir**: Dijwartir.

**تیژکرن**: دژوارکرن

(التحويف)

**Tîjkirin**: Dijwarkirin.

**تیژکری**: دژوار کری

(المحرف طعمه)

**Tijkirî**: Dijwarkirî.

**تیژی، تیژاتی، تیژیاتی**: دژواری، دژواریاتی

(الحرافه)

**Tîjî = Tîjatî = Tijîyatî**: Dijwarî, dijwarîyatî.

**تیژ**: ئامویرێ خوەش، دڕ

(الحاد، الصارم)

**Tîj**: Amwîrê xweş, dirr.

**تیژ**: چیخ، سەرزراڤ و دڕ

(المدبب)

**Tîj**: Çîx, ser zirav û dirr.

**تیژبون**: دڕبون، چیخ بون

(التحدد، التدبب)

**Tîbûn**: Dirrbûn, çîxbûn.

**تیژبوی**: دڕبوی، چیخ بوی

(المحدد، المدبب)

**Tîjbûy**: Dirrbûy, çîxbûy.

**تیژتر**: دڕتر، چیخ تر

(الاحدد، الاحد، الادبب)

**Tîjtir**: Dirrtir, çîxtir.

**تیژکرن**: دڕکرن، چیخ کرن

(التحديد، التدبيب)

**Tîjkirin**: Dirrkirin, çîxkirin.

**تیژکری**: دڕکری، چیخ کری

(المدد، المدبب)

**Tîjkirî**: Dirrkirî, çîxkirî.

**تیژی، تیژیاتی**: دڕی، دڕیاتی، چیخی، چیخیاتی

(الحداده، الصرامه، الدبب)

**Tîjî = Tîjîyatî**: Dirrî, dirrîyatî, çîxî, çîxîyatî.

**تیژبەر**: تەقالێ بەرێ دڕ، چیخەبەر، کێلەبەر

(الظرب)

**Tîjber**: Teqalê berê dirr, çîxeber, kêleber.

تیژاڤ: تیزاب، ئاڤێ دکەن سەرخوەلیێ ئەوا دئامانی ددیرهیت دبێژنێ تیژاڤ، یانی ڤەوەرینکا ئاڤا خوەلیێ

(الاسید، محلول مرکز، الماء المرشح من الرماد)

**Tîjav:** Tîzab, avê diken ser xwelîyê ewa di amanî di dîrhît dibêjnê tîzav, yanî vewerînka ava xwelîyê.

تیڤل: کەڤل، پیست، قەلوال، قەلپ

(القرف، القلف، القلافە، القشرە، الجلد)

**Tivil:** Kevil, pîst, qelwal, qelp.

تیڤلێ کاکلێ: پیستێ کاکلا فێقی یێ تەنکە گەلەک وەک تیڤلێ کاکلا گویزێ

(الفوف، القشرە الرقیقە علی الحبە)

**Tîvlê kakilê:** Pîstê kakila fêqî yê tenike gelek wek tîvlê kakila gwîzê.

تیڤکەلانک: کەڤلوژانکێ کەلیکا

(السنف، خریطە فیها حب الزرع کالفاصولیا)

**Tîvkelank:** Kevlojanka kelîka.

تیڤلاندن: سپی کرن، رویچکاندن، گوران، تازی کرن، لوچ کرن

(القلف للشجر، اللحت للعصا، الحضرم، الفذخ، الجرد، التجرد)

**Tîvlandin:** Spîkirin, rwîçikandin, guran, tazîkirin, loçkirin.

تیڤل بەردان: قەلپ ژێڤەکرن

(التقلف للشجر)

**Tîvilberdan:** Qelp jêvekirin.

تیڤلین: سپی بون، گوران، تازی بون، لوچ بون

(التوسف، السلخ)

**Tîvilîn:** Spîkirin, guran, tazîbûn, loçbûn.

تیڤلێ تری: سێلمیتە

(النطل)

**Tîvilê tirî:** Sêlmîte.

تیڤەنان: خوە لبەرڤەنان، خوە لبەر درست کرن، لبەر راوەستان

(الاقمطرار للشر، التحفز، التوفز)

**Tîvenan:** Xwe libervenan, xwe li ber diristkirin, liber rawestan.

تیڤارێز: گیرا بەروار، چیق، زڤێلە، زولە، تەسمە

(الشریحە، الوحم)

**Tîvarêz:** Gîrra berwar, çîq, zivêle, zole, tesme.

تیڤل گوتن: ئاخفتنا کیندار، قاپ هاڤێتن، نەکامی کرن

(الکلام اللاذع، القذع، الطعن)

**Tîvilgotin:** Axiftina kîndar, qaphavêtin nekamîkirin.

تیقەل: چیق، کنجر، چنگر، جلکێ درهای، چیق ڤێدا شوربون

(الثیاب الرث، الاسمال، الثوب الممزق)

**Tîqel:** Çîq, kincir, çingir, cilkê dirhay, çîq vêda şorrbûn.

تیق تیق، تیقێن: لیق لیق، کەنیێ بلند، دەنگێ کەنیێ

(القهقهە)

**Tîqtîq = Tîqên:** Lîqlîq, kenyê bilind, dengê kenîyê.

تیک: دەرز، پەق، کەلشت، دەڤلو

(الصدع، الفطر، الشق، الفرج، الرأب، الوقر، الفلق)

**Tîk:** Derz, peq, kelişt, devlo.

تیک بون: دەرزین، پەقان، کەلشتن، دەڤلوبون

(التصدع، التفطر، الانفراج، الفصام، التشقق، التفلق)

**Tîkbûn:** Derizîn, peqan, kelîştin, devlobûn.

تیک بوی: دەرزی، پەقای، کەلشتی، دەڤلوبوی

(المتصدع، المفطور، المشقوق، الفالق، المنفرج، المفصم)

**Tîkbûy:** Derizî, peqay, kelîştî, devlobûy.

تیک تر: دەرزی تر، پەقای تر، کەلشتی تر، دەڤلوتر

(الاصدع، الاشقق، الافلق، الافطر، الافصم)

**Tîktir:** Derizîtir, peqaytir, kelîştîtir, devlotir.

تیک کرن: دەرزاندن، پەقاندن، کەلاشتن، دەڤلوکرن

(التصدیع، التفلیق، التفطیر، التفلیق)

**Tîkkirin:** Derizandin, peqandin, kelaşti devlokirin.

تیک کری: دەرزاندی، پەقاندی، کەلاشتی، دەڤلو کری

(المصدع، المشقق، المفطر، المفلق)

**Tîkkirî:** Derizandî, peqandî, kelîştî, devlokirî.

**تیکا پەردێ:** پەقا پەردێ

(السجف)

**Tîkaperdê:** Peqa perdê.

**تیکالە:** زڤێلە، تەسمە، زولە

(الشریحه، للجلد وللحم ونحوه)

**Tîkale:** Zivêle, tesme, zole.

**تیکەل:** جلکێ درهای، کنجر، چنگر، جلکێ ڤەرویفای، جلکێ هلهلی، جلکێ هەلوەرهای

(الثوب الممزق، الاسمال، الرث)

**Tîkel:** Cilkê, dirrhay, kincir, çingir, cilkê verrwîfay, cilkê hilhilî, cilkê helwerhay.

**تیکا کەڤری:** کەلشتا بەری، پەقا کەڤری

(الفت)

**Tîka Kevrî:** Kelişta berî, Peqaberî.

**تیکا بەری:** پەقابەری

(الوقر)

**Tîkaberî.**

**تیکا جلکی:** شەقا جلکی، پەقا جلکی

(الهتأ، الهتق)

**Tîkacilkî:** Şeqa cilkî, peqa cilkî.

**تیلی:** هندەک ریشیک بون بکراسی ڤەدهێلان دبالنجکێت شەلیدا بەردیدان

(الطره، ذوائب اللباس)

**Tîlî:** Hindek rîşîkbûn bi kirasî ve dihêlan di balinckêt şêlîda berdidan.

**تیل:** حولی، دەشت، هوسی

(الاملس، الحلس، اللجم، الدلاص)

**Tîl:** Hulî, deşt, husî.

**تیل بون:** حولی بون: دەشت بون، هوسین بون

(التملس، التدلص، التحلس، التلجم)

**Tîlbûn:** Hulîbûn, deştbûn, husînbûn.

**تیل بوی:** حولی بوی، دەشت بوی، هوسی بوی

(المملس، المدلص، الملجم، المحلس)

**Tîlbûy:** Hulîbûy, deştbûy, husîbûy.

**تیل تر:** حولی تر، دەشت تر، هوسی تر

(الاملس، الادلص، الالجم، الاحلس)

**Tîltir:** Hulîtir, deşttir, husîtir.

**تیل کرن:** حولی کرن، دەشت کرن، هوسان، ڤەهوسین

(التدلیص، التلمیس، التحلیس، التلجیم)

**Tîlkirin:** Hulîkirin, deştkirin, husan, vehusîn.

**تیل کری:** حولی کری، دەشت کری، ڤەهوسای، هوسی

(المملس، المدلص، المحلس، الملجم)

**Tîlkirî:** Hulîkirî, deştkirî, vehusay, husî.

**تیلی، تیلاتی، تیلیاتی:** حولیاتی، دەشتییاتی، هوسیاتی

(الملس، الملوسه، الدلص، الدلیص، اللجیم، اللحیس)

**Tîlî = Tîlatî = Tîlîyatî:** Hulîyatî, deştîyatî, husîyatî.

**تیلک:** کابێ چکەوتوفێ دی حولی بوی

(الکعب الاملس)

**Tîlk:** Kabê çike û tofê dî hulîbûy.

**تیل بەند:** ژان چون، پوتی بون، شل بون، قەرموکی بون

(المخدر، المغمی علیه)

**Tîlbend:** Jançûn, pûtîbûn, şilbûn, qerrmokîbûn.

**تیل بەندی:** ژانیاتی، پوتییاتی، شلیاتی، شلی، قەرەموکیاتی

(الخدر، الشلل، الغیبوبه، الذهول)

**Tîlbendî:** Janîyatî, pûtîyatî, şilîyatî, şilî, qerrmokîyatî.

**تیله شور:** کەسێ بو ترتوزی وکەشخە ریشیکا بجلکێت خوەدا شوردکەت یانی فەلیتە وکەتوەر، ترتوز وبەرلاق وکەشخە چی

(المسدول الطره، ویکنی للسفاله والحمق)

**Tîleşorr:** Kesê bo tirtozî û keşxe rîşîka bicilkêt xweda şor diket yanî felîte û ketwer, tirtoz û berlaq û keşxeçî.

**تیمار:** ئالیکازێدە بدەن دەوار وحێوانێ شولی

(الزفره، الوجبه الاضافیه لتعلیف الحیوان)

**Tîmar:** Alîka zêde biden dewar û hêwanê şolî.

**تینک:** تیڤلکێ تەنکێ بن تیڤلێ دار وباری ڤە

(القشره الرقیقه، اللحاء)

**Tînk:** Tîvilkê tenikê bin tîvilê dar û barî ve.

**تینک راچاندن:** هاتن وچون

(الحرکه المکوکیه ویخص الحیاکه، المجئ والرواح)

**Tînik raçandin:** Hatin û çûn.

**توپ توپ، توپێن:** دەنگێ کەتن و وەرهانا تشتێ سەنگ وگران

(اللدم، صوت سقوط الحجر والفاكهه من الشجره ونحوه)

**Tuptup = Tupên:** Dengê ketin û werhana tiştê seng û giran.

**توت:** بوس، بەرزین، لێ خورین، ئاژوتن، دویرکرن

(كلمه لطرد الكلب وزجره)

**Tut:** Bus, berrzîn, lêxurrîn, ajotin, dwîrkirin.

**توت بون:** بوس بون، دابەرزین، لێ خورین، دویر بون، هاژوتن بون

(الانتباذ، التخسي، الخسي)

**Tutbûn:** Busbûn, daberrzîn, lêxurrîn, dwîrbûn, hajotinbûn.

**توت بوی:** بوس بوی، دابەرزی بوی، لێ خوری بوی، هاژوتی بوی، دویربوی

(المنبوذ، الخاسي)

**Tutbûy:** Busbûy, daberrzîbûy, lêxurrîbûy, hajotîbûy, dwîrbûy.

**توت کرن:** بوس کرن، دابەرزاندن، لێ خورین، هاژوتن کرن، دویر کرن

(الطرد، الانباذ، الاخساء)

**Tutkirin:** Buskirin, daberrzandin, lêxurrîn, hajotinkirin, dwîrkirin.

**توت کری:** بوس کری، دابەرزاندی، لێ خوری، هاژوتی، دقون سەڤەکری

(المطرود، المنبوذ، المخسي)

**Tutkirî:** Buskirî, daberrzandî, lêxurrî, hajotî, diqûn sevekirî.

**توتی، توتیاتی:** بوسیاتی، دابەرزینی، لێ خورینی، هاژوتنی

(النبذ، الطرد، الخسأ)

**Tutî = Tutîyatî:** Busîyatî, daberzînî, lêxurrînî, hajotî.

**توتمە:** چاڤ تاری بون، حوتم بون، حوتم، ماتە

(العمى، الرمد)

**Tutme:** Çavtarîbûn, hutimbûn, hutim, mate.

**توتمەیی، توتمەیاتی:** حوتمی، حوتمییاتی، کورەیی، چاڤ تاریاتی، ماتەیی

(العمهان، العمايه)

**Tutmeyî = Tutmeyatî:** Hutmî, hutmîyatî, ko reyî, çavtarîyatî, mateyî.



**توخم:** تەخلیت، نژاد، بنیاد، نڤش

(الاصل، النوع، الجنس، الصنف)

**Tuxim:** Texlît, nijad, binyad, niviş.

**توخمێ جلکی:** تەخلیتێ کاری، راپیچ، کاروکوک

(الزى)

**Tuxmê cilkî:** Texlîtê karî, rapêç, kar û kok.

**توخویب:** سینور، شار، مەرز، گڤاندە، لێڤ

(الحد، الطور، الحدود)

**Tuxwîb:** Sînor, şar, merz, givande, lêv.

**توخویب درین:** هەتک بەر، بوردرین، بێ پەردە، بێ تورە

(الفاحش، المتحلل، الاباحي، المستهتر، المتجاوز على العرف)

**Tuxwîbdirrîn:** Hetikber, borrdirrîn, bêperde, bê tore.

**توخویب دار:** سینورکری، مەرزکری، شارکری

(المحدود)

**Tuxwîbdar:** Sînorkirî, merzkirî, şarkirî.

**توخویب دراندن:** خورتی کرن، بێ تورەیی

(الاستهتار، التحلل، الاباحيه)

**Tuxwîbdirrandin:** Xurtîkirin, bêtoreyî.

**توخویب دان:** سینور دانان، شاردانان

(الاعتداء، التجاوز علىٰ الحدود)

**Tuxwîbdan:** Sînordanan, şardanan.

**توخویب دای:** سینور کری، شارکری، مەرزکری

(التحديد)

**Tuxwîbday:** Sînorkirî, şarkirî, merzkirî.

**تور:** موهر، دەق

(الطغرآء، الامضاء، الختم)

**Turr:** Mohir, deq.

**تور:** جهێ برینا بەروار، برینا بەروار وکەش بر، پلێت

(الجد، محل القطع، الكظر)

**Turr:** Cihê birîna berwar, birîna berwar û keşbirr, pilêt.

**توربون:** پچان، پلێت بون، قەڤان، برین بون، قەدبون

(الانقطاع الجدد، القصف للعود)

**Turrbûn:** Piçan, pilêtbûn, qefan, birrîn bûn, qedbûn.

**توڕبوی:** پچای، پلێت بوی، قەفای، بڕی بوی، قەدبوی
(المقطوع، المجدود، المقصوف)

**Turrbûy:** Piçay, pilêtbûy, qefay, birrîbûy, qedbûy.

**توڕکرن:** پچاندن، پلێت کرن، قەفاندن، بڕین کرن، قەد کرن
(الاقطاع، الاجداد، الكظر، الجد)

**Turrkirin:** Piçandin, pilêtkirin, qefandin, birrînkirin.

**توڕکری:** پچاندی، پلێت کری، قەفاندی، بڕین کری، قەد کری
(المجدد، المقطوع، المقصف)

**Turrkirî:** Piçandî, pilêtkirî, qefandî, birrînkirî, qedkirî.

**توڕیابون:** فڕێ کەتن، رێڤەچونا سل، سلهان
(السيرا العاضب)

**Turrîyabûn:** Firrê ketin, rêveçûna sil, silhan.

**تورا دارێ:** گولیسکا دارێ، گوپا دارێ، شلک
(الكفه، للشجره منشهاه حيث ينقطع)

**Turra darî:** Gulîska darê, gupa darê şilik.

**توڕیچک:** کومت، کوپ، کولمتە، شلک
(النيق، ارفع مكان فى الجبل)

**Turrîçk:** Kumt, kop, kolimte, şilik.

**توڕی:** بێ بها، لێهبوک، هەتک چوی، بێ ڕوی، بێ تورە، بێ ڕێز
(المفضوح، الفضيح، الفاضح)

**Turrî:** Bê biha, lêhbok, hetikçûy, bêrwî, bê-tore, bê rêz.

**توڕی بون:** بێ بهابون، هەتک چون، بێ ڕوی بون، بێ تورە بون، بێ ڕێز بون
(الافتضاح)

**Turrîbûn:** Bê bihabûn, hetikçûn, bê rwîbûn, bê torebûn, bêrêzbûn.

**توڕی بوی:** بێ بها بوی، هەتک چوی، بێ ڕوی بوی، بێ تورە بوی، بێ ڕێز بوی
(المفضوح)

**Turrîbûy:** Bê bihabûy, hetikçûy, bêrwîbûy, bêtorebûy, bê rêzbûy.

**توڕی تر:** بێ ڕوی تر، بێ بهاتر، بێ هەتک تر، بێ تورەتر، بێ ڕێزتر
(الافضح، الافضح)

**Turrîtir:** Bê rwîtir, bê bihatir, bê hetiktir, bê toretir, bê rêztir.

**توڕی کرن:** بێ ڕوی کرن، بێ بها کرن، بێ هەتک کرن، بێ تورەکرن، بێ ڕێزکرن
(التفضيح، الفضح، الافضاح)

**Turrîkirin:** Bê rwîkirin, bêbihakirin, bêhetikirin, bêtorekirin, bê rêzkirin.

**توڕی کری:** بێ ڕوی کری، بێ بها کری، بێ هەتک کری، بێ تورەکری، بێ ڕێزکری
(المفضح)

**Turrîkirî:** Bê rwîkirî, bêbihakirî, bêhetikkirî, bêtorekirî, bê rêzkirî.

**توڕیاتی:** بێ ڕوییاتی، بێ بهایی، بێ هەتکی، بێ تورەیی، بێ ڕێزی
(الفضاحه، الفضيحه)

**Turrîyatî:** Bê rwîyatî, bê bihayî. bê hetkî, bê toreyî, bê rêzî.

**تور توری:** پەل پەلی، ئاخفتن کوه
(الألكن، اللجلاج)

**Turturî:** Pelpelî, axiftin kuh.

**تورتوریاتی:** پەل پەلیاتی، ئاخفتن کوهی
(الكنه، اللكن، الجلجه)

**Turturîyatî:** Pelelîyatî, axiftin kuhî.

**تورپ تورپ، توڕپێن:** توپ توپ، دەنگێ وەرهانا تشتێ گران وبسەنگ
(اللدم، سقوط الحجر على الارض والفاكهه وامثالها)

**Turpturp = Turpên:** Tuptup, dengê werhana tiştê giran û bi seng.

**تور، توڕیچک:** گوپ، کوپ، کومت، کولمتە، شلک
(الحنبذه، القمه، القله)

**Turr = Turrîçk:** Gop, kop, kumt, kolimte şilik.

**تورسی:** تنێ، خوڕی، خومال
(الصرد، البحت، القفار، الخالص، المجرد، الحافه، الخاصيه، الجوهر)

**Tursî:** Tinê, xurrî, xumal.

**تورسی بون:** خوری بون، تنێ بون

(التجرد، التصرد)

**Tursîbûn:** Xurrîbûn, tinêbûn.

**تورسی بوی:** خوری بوی، تنێ بوی

(الجريد، المصرد، المقفر)

**Tursîbûy:** Xurrîbûy, tinêbûy.

**تورسی تر:** خوری تر، تنێ تر

(الاجرد، الاقفر، الاصرد)

**Tursîtir:** Xurrîtir, tinêtir.

**تورسی کرن:** خوری کرن، تنێ کرن

(التجريد، التقفير، التحفيف)

**Tursîkirin:** Xurrîkirin, tinêkirin.

**تورسی کری:** خوری کری، تنێ کری

(المجرد، المقفر، المصرد)

**Tursîkirî:** Xurrîkirî, tinêkirî.

**تورسییاتی:** خوریاتی، تینیاتی

(العفاف، البحت، القفر، الخلاصه)

**Tursîyatî:** Xurrîyatî, tinêyatî.

**تورسکین:** بەزین، لەزین، چاری

(الركض، العدو، الاسراع في السير)

**Turiskîn:** Bezîn, lezîn, çarî.

**تورانێ:** یاریەکە بچویک دکەن، پلێتانێ

(لعبه)

**Turranê:** Yarîyek, biçwîk diken, pilêtanê.

**توشیشی:** گومان، تەرتەرە، ترنگین، بەرگوه کەتن، گولێبونا کێم، پیچەک گولێ بون

(الوسوسه، الشک، الريبه، الاشاعه)

**Tuşîşî:** Guman, tertere, tiringên, berguh ketin, gulêbûna kêm, pîçek gulêbûn.

**توف:** گلیزا دەڤی

(البصاق، اللعاب، الريق)

**Tuf:** Gilîza devî.

**توف کرن:** گلیز هاڤێتن

(البصق)

**Tufkirin:** Gilîzhavêtin.

**توف داعویران:** گلیزە داعویران، ورق لگەویێ دان

(النغب)

**Tuf da'wîran:** Gilîze da'wîran, wirq li gewyê dan.

**تومانیتک:** گیایەکە وەکی سیرکانە لناڤ مێرگا شین دبیت ودخون

(الكراث البرى)

**Tumanîtk:** Gîyayeke wekî sîrkane li nav mêrga şîn dibît û dixon.

**توند:** گشت، تێک چوی، تێک بادای، قەرسی، موکوم، ئازا، چوی ئێک

(الشديد، المتوتر، القوى)

**Tund:** Gişt, têkçûy, têkbaday, qerrisî, mukum, aza, çûy êk.

**توند بون:** گشت بون، قەرسین، موکوم بون، ئازابون، چون ئێک، ئیشک دان بون

(التوتر، التشدد، التمتن)

**Tundbûn:** Giştbûn, qerrisîn, mukum bûn, azabûn, çûn êk, îşikdanbûn.

**توند بوی:** گشت بوی، قەرسی، موکوم بوی، ئازا بوی، چوی ئێک، ئیشک دای بوی

(المتوتر، المتشدد، المغتاظ)

**Tundbûy:** Giştbûy, qerrisî, mukum bûy, azabûy, çûyêk, îşikdaybûy.

**توند تر:** گشت تر، قەرسی تر، موکوم تر، ئازا تر، چوی ئێک تر، ئیشک دای تر

(الاشد، الاقوى، الاحرد)

**Tundtir:** Gişttir, qerrisîtir, mukumtir, azatir, çûy êktir, îşikdaytir.

**توند کرن:** گشت کرن، موکوم کرن، ئازا کرن، ئێک بون، قەرساندن، ئیشک دان

(التشديد، التوتير، التمتين)

**Tundkirin:** Giştkirin, mukumkirin, azakirin, êkbûn, qerisandin, îşikdan.

**توند کری:** گشت کری، موکوم کری، ئازا کری، تێک بری، قەرساندی، ئیشک دای

(المشدد، الموتر، الممتن)

**Tundkirî:** Giştkirî, mukumkirî, azakirî, têkbirî, qerrisandî, îşikday.

**توندی، توندیاتی:** گشتی، موکومی، ئازایی، قەرسیاتی، ئیشک دانی

(الشده، التوتر، التازم، الحرد، القوه، العصبيه)

**Tundî = Tundîyatî:** Giştî, mukumî, azayî, qerrisîyatî, îşikdanî.

**تونه**: چونه
(لاشیٔ)
**Tune**: Çune.

**توم توم، تومێن**: دەنگێ تشتێ ڤالا وخولۆله وەک دەهۆلێ
(الدردار، العزف، القرع صوت الطبل)
**Tumtum = Tumên**: Dengê tiştê xulole wek diholê.

**تولیل ومولیل**: گەوگەوک، عەجویچک ومەجویچک، زاروک
(الصبیه، الاطفال)
**Tulîlûmulîl**: Gewgewk, 'ecwîçk û mecwîçk, zarok.

**تویله**: کویچک، سەیێ بچویک، تەخلیتەکێ سانه
(القطرب، صغار الکلاب)
**Twîle**: Kwîçik, seyê biçwîk, texlîtekê sane.

**توی**: فێقی یەکه یێ شرینه دخون
(التوت)
**Twî**: Fêqîyeke yê şîrîne, dixon.

**توی، تویک**: سەرتویک، تیڤلکێ شیرێ مەیاندی، کەفاسەر تشتێ روهن
(الزبید، الزهوم، القشطه، الدوایه، مایعلوا الشائل)
**Twî = Twîk**: Sertwîk, tîvilkê şîrê meyandî, kefa ser tiştê ruhin.

**تویتک**: خیبارێ بچویک
(الشعرور، للخیار ونحوه)
**Twîtik**: Xiyarê biçwîk.

**تویترین**: ڤەلەرزین، گرک
(القشعریره، الارتجاف، الرعده)
**Twîtirîn**: Velerzîn, girrik.

**تویتن**: گیاکه دویکێلا وی دکێشن، جگاره، گیایێ قەلوینێ
(التبغ)
**Twîtin**: Giyayeke dwîkêla dwîkêla wî dikêşin, cigare, gîyayê qelwînê.

**تویخ**: تشتێ تاتا لسەرک، تەسمه تەسمه لسەرک، تەبەق دەسمه
(الطبقه، القشره)
**Twîx**: Tiştê tata li serik, tesme tesme li serik, tebeq, desme.

**تویخ تویخ**: کویزی کویزی، تەسمه تەسمه، تەبەق تەبەق، دەکه دەکه
(طبق فوق طبق، المضلع المتطابق)
**Twîx twîx**: Kwîzî kuwîzî, tesme tesme, tebeq tebeq, deke deke.

**تویخ ناس**: شارەزایێ تویخێت عەردی (ژیولوژی)
(خبیر الطبقات، الجیولوجی)
**Twîxnas**: Şarezayê twîxêt 'erdî (Jîyolojî).

**تویخێ چییای**: دەکێ چییای
(القعف)
**Twîxê çîyay**: Dekê çîyay.

**توی خەمری**: توخمەکێ توییایه
(صنف من التوت)
**Twîxemrî**: Tuxmekê twîyaye.

**توی قەسپ**: توخمەکێ توییایه سەرپشک دسپینه
(صنف فاخر من التوت)
**Twîqesp**: Tuxmekê twîyaye serpişk, dispîne.

**توی شەمبی**: توخمەکێ تویێت باشن رەنگ سورن
(توت الشام)
**Twîşembî**: Tuxmekê twîyêt başin, reng sorin.

**توی رەشک**: توخمەکێ توییایه رەنگ رەشن
(صنف من التوت)
**Twîrreşk**: Tuxmekê twîyaye, reng reşin.

**توی هویرک**: توخمەکێ توییایه یێت بەیار وچولا
(التوت البری)
**Twîhwîrk**: Tuxmekê twîyaye yêt beyar û çola.

**تویر**: توربه، تەلیس
(الکیس، الجعبه)
**Twîr**: Torrbe, telîs.

**تویرێ خازوکیێ**: توربێ خازوکیێ، توربێ سائیلیێ
(الشلاق)
**Twîrê xazokîyê**: Torrbê xazokîyê, torrbê sa êlîyê.

**تویری**: حێوانەکی وەکی رویڤی و تویلێت سایه
(ابن اوی، ابن عرس)
**Twîrî**: Hêwanekê wekî rwîvî û twîlêt saye.

**تویزی:** کویزی، پرتەکا فێقی، کەرێ فێقی، کەرکێ فێقی

(الجزء من الفاكهه)

**Twîzî:** Kwîzî, pirteka fêqî, kerê fêqî, kerkê fêqî.

**تویس:** حەلانکێ گروڤر، تەقالێ بەری

(الحلان ، قرص الحجر)

**Twîs:** Helanekê girovir, teqalê berî.

**تویسانێ:** یاریەکە بتەقالێ بەری وگوکەکا بەری دکەن

(لعبه)

**Twîsanê:** Yarîyeke bi teqalê berî û gokeka berî diken.

**تویسی:** توخمەکێ کیڤارایە، توخمەکێ گیایێ بستریە

(الكتم، نبات يصبغ به الحبر)

**Twîsî:** Tuxmekê kîvaraye, tuxmekê gîyayê bi stirîye.

**تویسان:** خوەڤەدزین، کویساندن، خوە ڤەکێشان بدزیڤە

(السل، النصل، التنصل، الزلق في السير)

**Twîsan:** Xwevedizîn, kwîsandin, xwe vekêşan bidizîve.

**تویساندن:** خوە ڤەکێشان وچونا بدزیڤە

(التسلل، التنصل، التزلق في السير)

**Twîsandin:** Xwe vekêşan û çûna bi dizîve.

**تویش:** تێ تەشلقین، تێ هەلبون، پێڤەبون، تێ وەربون، ناڤ هەلبون

(الاصابه، الورطه، التعرض، اللقاء، الصدفه)

**Twîş:** Tê teşqilîn, tê helbûn, pêvebûn, têwerbûn, navhelbûn.

**تویش بون:** تێ تەشلقین بون

(التعرض، التصادف، الالتقاء)

**Twîşbûn:** Tê teşqilînbûn.

**تویش بوی:** تێ تەشقلی بوی

(المعروض للخطر، المصادف)

**Twîşbûy:** Tê teşqilîbûy.

**تویش کرن:** تێ تەشقلاندن

(التعريض، المتلقى)

**Twîşkirin:** Tê teşqilandin.



**تویش کری:** تێ تەشقلاندی

(المورط، المعرض)

**Twîşkirî:** Tê teşqilandî.

**تویشی، تویشاتی:** تێ تەشقلیاتی، تی هەلبونی، تێ تەشقلین

(الورطه، المصيبه، البلاء، الصدفه، اللقيا)

**Twîşî = Twîşîyatî:** Tê teşqilîyatî, têhelbûn, têteşqilîn.

**توفان:** ڕێژیا دژوار، لێمشتا خورت، لهیامەزن، لیسەرا گران

(الهلاب، الفيضان، الطوفان)

**Twîfan:** Rêjîya dijwar, lêmişta xurt, lihîya mezin, lîsera giran.

**تویکل:** تیڤل، پیست، کەڤل

(القشره)

**Twîkil:** Tîvil, pîşt, kevil.

**تویلە:** سەیێ بچویک، توخمەکێ سەیێت هویرە

(القطرب، الكلب الصغير)

**Twîle:** Seyê biçwîk, tuxmekê seyêt hwîre.

**توی هشک:** تویێت هشک کری

(الفرصاد، التوت اليابس)

**Twîhişk:** Twîyêt hişkkirî.

**تویرێ گونا:** کەڤلێ رتلا

(الصفن)

**Twîrê guna:** Kevlê ritla.

**تۆ:**

(انت)

**To.**

**تۆب:** بەرێ پەروکی، باپێچاپەروکی

(طول القماش)

**Tob:** Berê perokî, bapêça perokî.

**تۆبک:** دەست

(الدرزن)

**Tobik:** Dest.

**تۆپ:** تڤەنگامەزن، بەرقانیا ناسنی

(المدفع)

**Top:** Tivenga mezin, berqanîya asinî.

**تۆپین:** سەکتین، مرن، کوژین

(الموت الحتفی المرغم)

**Topîn:** Sekitîn, mirin, kujîn.

**تۆپاندن:** سەکتاندن، مراندن، کوژتن

(الاماته، القتل)

**Topandin:** Sekitandin, mirandin, kujtin.

**تۆپ:** هەمی، بجارەکێ، خرەک

(برمه الکل)

**Top:** Hemî, bicarekê, xirrek.

**تۆپاندی:** کوژتی، سەکتاندی، مراندی

(الممیت)

**Topandî:** Kujtî, sekitandî, mirandî.

**تۆپز:** چویڤێ مەزن، باکورە، دوقچک، میرکوتک، دار دنگ

(المتیخه، المنساه، الهراوه، المقمعه، المقرعه)

**Topiz:** Çwîvê mezin, bakore, mîrkutk, dar deng.

**تۆپزکەندال:** بەلافش، ئاخفتن بەلاڤ، ئاخفتنا بێ بنیات

(المهذار)

**Topizkendal:** Belafiş, axiftin belav, axiftina bê binyat.

**تۆپز کەندالی:** بەلافشی، ئاخفتن بەلاڤی

(الهذر، الهراء)

**Topizkendalî:** Belafişî, axiftin belavî.

**تۆتی:** تەیرەکە زەهری ئاخفتنێ ڤەدکەت

(الببغاء)

**Totî:** Teyreke zehrî axiftinê vediket.

**تۆتیا:** ئاخەکە دەرمانە بو چاڤێت کول، دەرمانێ چاڤ کولیێ

(التوتیاء)

**Totîya:** Axeke dermane bo çavêt kul, dermanê çavkulîyê.

**تۆتک:** نانێ بچویک، نانا بچویک

(الرغیف)

**Totik:** Nanê biçwîk, nana biçwîk.

**تۆخ:** توخمەکێ چەکێت ژنانە دکەن گەردەنا خوە، چەکێ قرکێ

(نوع من الحلی النسائی)

**Tox:** Tuxmekê çekêt jinane diken gerdena xwe, çêkê qirkê.

**تۆڕ:** پاتێ کون کون وەکی سەرادێ، بەنکێ فر ڕاچاندی

(الشبکه)

**Torr:** Patê kun kun wekî serradê, benkê firr raçandî.

**تۆڕا نێرچیرێ:** تورا گرتنا تەیر و حێوانا

(القحازه، الوقاص، المجزفه)

**Torra nêrçîrê:** Torra girtina teyr û hêwana.

**تۆربە:** تویر، تەلیس

(الکیس)

**Torrbe:** Twîr, telîs.

**تۆرە:** ڕێز، هی، گز، ئول

(الادب، النظام، الطقوس الدینیه، العاده، العرف)

**Tore:** Rêz, hî, giz, ol.

**تۆرەڤان:** ڕێزدار، هوزان ڤان، چیروک نڤیس

(الادیب، المنظم، الناظم)

**Torevan:** Rêzdar, hozanvan, çîroknivîs.

**تۆرەڤانی:** ڕێزداری، هوزانڤانی، ڤەهێنان

(الادب، ممارسه الادب)

**Torevanî:** Rêzdarî, hozanvanî, vehênan.

**تۆڕەڤان:** کەسێ تورانێرچیری ڤەددەت، نێرچیرڤانێ توڕێ

(القحاز، الشباک، صیاد الشبکه)

**Torrevan:** Kesê torra nêrçîrê vedidet, nêrçîrvanê torrê.

**تۆڕین:** ڕێزدار

(الادیب، الادیبه، النجیب، المؤدب)

**Torrîn:** Rêzdar.

**تۆز:** گەر، غولپەلێل، کێخمیتە، ئۆر، عۆر، تەمبلێر

(الصعید، العجاج، العفر، الغبار)

**Toz:** Ger, xulpelêl, kêxmîte, orr, 'orr, tembilêr.

**تۆزکی:** گەرکی، تەمبلێرکی

(المغبر)

**Tozkî:** Gerkî, tembilêrkî.

**تۆزکییاتی:** گەرکییاتی، تەمبلێرگییاتی

(العفره، الاغبرار)

**Tozkîyatî:** Gerkîyatî, tembilêrgîyatî.

**تۆزا بەری:** بەرێ هێرای

(السنین، المسنون)

**Tozaberî:** Berê hêray.

**تۆڤ:** دندک، دندکا چاندنێ

(البذر، البزر)

**Tov:** Dindik, dindika çandinê.

**تۆڤ چین:** دندک چین

(الباذر، الزارع)

**Tovçîn:** Dindik çîn.

**تۆڤ چاندن:** دندک چاندن

(الزرع، البذر)

**Tovçandin:** Dindik çandin.

**تۆڤ چینی:** دندک چینی

(الزراعه، البذار)

**Tovçînî:** Dindik çînî.

**تۆڤێ چایێ:** چا

(الشای)

**Tovê çayê:** Ça.

**تۆڤێ خرنیڤکێ:** خرنیڤک تراشوکه وەکی حەجی باهیڤکێ

(الهبد)

**Tovê xirrnîfkê:** Xirrnîfk tiraşoke wekî hecî bahîvkê.

**تۆڤێ میتکێ:** توڤی تراشوکا بمریا وەردکەن

(الفطس)

**Tovê mîtkê:** Tovê tiraşoka bi miriya werdiken.

**تۆڤک:** دندک

(حب القرع ونحوه البذره)

**Tovik:** Dindik.

**تۆق:** گەردەنی، چەکێ ژنایه بستووێ خوه ڤەدکەن

(صنف من الحلی النسائی)

**Toq:** Gerdenî, çekê jinaye bistûwê xwe ve vediken.

**تۆک:** تەیرکەکێ ژ توخمێ بمایه بشەڤێ دخوینیت

(الضوع، الصدی، لاهامه، البوه، طائر لیلی، من فصیله البوم)

**Tok:** Teyrkekê ji tuxmê bimaye bi şevê di xwînît.

**تۆک:** کڤانوک، خەلەک، بازن، گەرینوک

(الحلقه، الطوق)

**Tok:** Kivanok, xelek, bazin, gerrînok.

**تۆکا ئاشی:** ئاشێ ژ گەلەک بەرا لێکددەن تووکەکا خر دێ تێ ئالینن دا پێکڤه بمینیت

(حلقه الرحی)

**Toka aşî:** Aşê ji gelek bera lêk diden tokeka xirr dê tê alînin da pêkve bimînît.

**تۆک بون:** توک ئالاندن، تشتێ خودان تۆک

(التحلق، التطوق)

**Tokbûn:** Tok alandin, tiştê xudan tok.

**تۆک بوی:** تشتێ خەلەک تێ ئالاندی

(المطوق)

**Tokbûy:** Tiştê xelek tê alandî.

**تۆک کرن:** خەلەک کرن

(التطویق، التحلیق)

**Tokkirin:** Xelekkirin.

**تۆک کری:** خەلەک کری

(المطوق)

**Tokkirî:** Xelekkirî.

**تۆک گیسنی:** خەلەکه ددور گیسن ودندبیاهەڤجاری گرێدەن

(طوق سکه المراثه، المحرات)

**Toka gêsnî:** Xeleke didor gêsin û dindibîya hevcarî girêdiden.

**تۆل:** دوز

(النقمه، الثار، القصاص)

**Tol:** Doz.

**تۆل ڤەکرن:** دوز کرن

(الانتقام، الاقتصاص، القود، الثار)

**Tolvekirin:** Dozkirin.

**تۆلک:** گیایەکه قەلاندی ولێنای دخون

(الخباز، نبات یؤکل)

**Tolk:** Gîyayeke qelandî û lênay dixon.

**تۆل وتەر:** تازه وگەش

(النضر، الغضیر، الطری، البهیج)

Tolûter: Tazê û geş.

**تۆل وتەری:** تازەتی وگەشاتی

(الغضاره، النضاره، الطراوه، البهجه)

**Tolûterrî:** Tazetî û geşatî.

**تۆلاز**: جحێل، گەنج، لاو

(الفتى، الشاب)

**Tolaz**: Cihêl, genc, law.

**تۆلازی**: جحێلی، گەنجی، لاوینی، لاویاتی، گەنجیاتی

(الفتوه، الشباب)

**Tolazî**: Cihêlî, gencî, lawînî, lawîyatî, gencîyatî.

**تۆلە**: سەیێ بچویک، توخمەکێ سانە

(القطرب، الكلب الصغير)

**Twîle**: Seyê biçwîk, tuxmekê sane.

**تۆلیڤان**: جان، تێروتژی، تەڕ و تول

(المبهج، الغضير، النضير)

**Tolîvan**: Can, têr û tijî, terr û tol.

**تۆمک، طۆمک**: چینی، دانێ ببەر تەیرا وەردکەن

(علف الطيور)

**Tomik**: Çînî, danê biber teyra werdiken.

**تۆمک**:دبێژن وی تشتێ دکەن سەر تەلهێ بو حێوان گرتنێ

(العلف الموضوع علىَ المصيده والفخاخ)

**Tomik**: Dibêjin wî tiştê diken ser telhê bo hêwan girtinê.

**تۆمک دان**: دانانا تومکی ل هندە جها هەتا حێوان بخوت دا تەلهێ لوی جهێ ڤەدەن یێ حێوان هیبویێ

(نشر العلف على المصيده)

**Tomikdan**: Danana tomkî li hine ciha heta hêwan bixot da telhê li wî cihî veden yê hêwan hîbûyê.

**تۆمار، طۆمار**: خرابی، نەخوەش

(السوء، الشر)

**Tomar**: Xirabî, nexweş.

**تۆمار**: دەقدان، نیشان کرن، چاپ کرن

(السجل، الدون)

**Tomar**: Deqdan, nîşankirin, çapkirin.

**تۆمار کرن**: چاپ کرنا دەنگی

(التسجيل، التدوين)

**Tomarkirin**: Çapkirina dengî.

**کووفی رەشک**: توخمەکێ چویچکایە
(القنبره، القيره، عصفور)
**Kofîreşk**: Tuxmekê çwîçkaye.

**کووفی**: شاشک، چاراسەری، پوشیا سەری، کولاڤێ بلند
(العمامه للنساء، التاج)
**Kofî**: Şaşik, çaraserî, poşiya serî, kulavêbilind.

**کوڤک**: ئامانێ خالی کرنا تشتێ روهن، دەف فرهەو لویلی تەنگە
(القمع، الراووق)
**Kovik**: Amanê xalîkirina tiştê rohn, dev firh û lwîlî tenge.

**کوڤان**: دەلەم، قەهر، دامان
(الحرض، الاسى، الكمد، الحسره، اللهف)
**Kovan**: Delem, qehir, daman.

**کوڤان دار**: دەلەمی، قەهری، دامای
(الحسير، الاسي، الحريض، الكامد، اللاهف، الملهف.)
**Kovandar**: : Delemî, qehirî, damay.

**کوڤان داری**: دەلەمیاتی، قەهرین، دامان
(التحسر، التحرض، التأسى)
**Kovandarî**: : Delemyatî, qehrîn, daman.

**کوڤار**: ئانوخ، تەخا پەرا
(المجله)
**Kovar**: Anox, texa perra.

**کوڤی**: نەکەهی، ژیوارێ چولی، خوەجهێ چول ویەیارا
(الوحش)
**Kovî**: Nekehî, jîwarê çolî, xwecihê çol û beyara.

**کووک**: کار، جلک، راپێچ
(المسبرت، الزی، هیئه اللباس)
**Kok**: Kar, cilk, rapêç.

**کووک**: تمام، سەراست، بسەروبەر، کوتا
(الزينه، الكامل، المرتب، المنظم)
**Kok**: Timam, serast, biserûber, kûta.

**کووک بون**: سەراست بون، کوتا بون، بسەروبەربون
(التزين، التكمل، الترتب، الانتظام)
**Kokbûn**: Serastbûn, kûtabûn, biserûberbûn.

**کووک بوی**: سەراست بوی، تمام بوی، بسەروبەربوی
(المزين، المكمل، المنظم، المرتب)
**Kokbûy**: Serastbûy, timambûy,biserûberbûy.

**کووک تر**: سەراست تر، کوتاتر، بسەروبەرتر، تمام تر
(الازين، الاكمل، الانظم، الارتب)
**Koktir**: Serattir, kûtatir, biserûbertir, timamtir.

**کووک کرن**: سەراست کرن، کوتاکرن، بسەروبەرکرن، تمام کرن
(التنظيم، الترتيب، الاكمال، التزيين، التكميل)
**Kokkirin**: Seratkirin, kûtakirin, biserûberkirin, timamkirin.

**کووک کری**: سەراست کری، کوتا کری، بسەروبەرکری، تمامٌ کری
(المكمل، المرتب، المزين، المنظم)
**Kokkirî**: Seratkirî, kûtakirî, biserûberkirî, timamkirî.

**کووکی، کووکیاتی**: سەراستی، کوتایی، بسەروبەریاتی، تمامی
(النظام، الكمال، الزينه، الترتيب)
**Kokî= Kokyatî**: Seratî, kûtayîr, biserûberyatîr, timamî.

**کوول**: ئاخویر، گوف، هەل، زنج، خانیێ بچویک
(الكوخ، السياخ، الكاخ)
**Kol**: Axwîr, gov, hel, zinc, xanîyê biçwîk.

**کوول**: گوف، هەل، ئاخویر، ئەختە خانە
(الاصطبل)
**Kol**: Gov, hel, exteane.

**کول**: رویت، رویس، دەرڤالا، حووچ
(الحاسر، العاري، الاجرد)
**Kol**: Rwît, rwîs, dervala, hoç.

**کوولە**: خولام، بەنی، سەپان
(الخادم)
**Kole**: Xulam, benî, sepan.

**کوولە کوولە**: دەپێ داری پێ کوودێ زڤستانێ پشتی لسەر بەفرێ پێ دکێشن
(لوح خشبى لنقل العلف على الثلج بالزحاف)
**Kol= Kole**: Depêdarîyê kod, zivistanê piştî li ser befrê pê di kêşin.

**کوولک**: چەپەرک، خانیکێ نێرچیرێ
(القفيه، الوصيده، القتره، البرأه، الزبيه للصيد)
**Kolk**: Çeperk, xanîkê nêrçîrê.

**کول مریشک**: خانیێ دیکلو مریشک (الخم)
**Kolmirîşk**: Xanîyê dî kil û mirîşka.

**کوول مێشک**: مێشەڤانک، مالامێشا
(العميره، العساله)
**Kolmêşk**: Mêşevank, mala mêşa.

**کوولان**: کەرخ، رێک، رێبار، شەقام، جادە

(الفارزه، الزقب، الزقاق، الطريق، الشارع)

**Kolan**: Kerx, rêk, rêbar, Şeqam, cade.

**کوولانی**: گەریدە، کەتوەر، کولان قوت، فەلیتە، راخوێتە

(الرعاع، المتكسع، الهمج)

**Kolanî**: Gerîde, ketwer, kokanqut, felîte, raxwîte.

**کوولان**: هەلخەپراندن، هەلشکافتن، هەل کەنان

(الحفر، العزق، النكش)

**Kolan**: Helxepirandin, helşikaftin, helkenan.

**کوولانا چاڤی**: چاڤ قەوراندن، چاڤ هەلکێشان

(الفقأ)

**Kolana çavî**:Çav qewirandin, çavhelkêşan.

**کوولان قوتان**: گەرهانا بێ شول، چەورین، چەرخین

(التكسع)

**Kolan qutan**: Gerhana bê şol, çewirîn, çerxîn.

**کوولان قوت**: گەریدێ بێ کار، سائورە، ساعێل

(المتكسع)

**Kolan qut**: Gerîdê bê kar, saorre, sa'êl.

**کوولان قوتی**: چەرخینا بێ شوول، چەورین

(الكسع)

**Kolanqutî**: Çerxîna bê şol, çewirî

**کوولینک**: ئامویرمکە دارا پێ دکولن بو کەفچکێت خارنێ

(الحفار، اله يحفر بها الخشب للملاعق ونحوها)

**کوولانا بیرێ**: قەوراندن، خەرتاندن، پلخانە کرن، قەنەبر کرن

( النبث، اخراف التراب من البئر)

**Kolana bîrê**: Qewirandin, xerritandin, pilxanekirin, qenebirkirin.

**کوول مال**: گازییا هاژوتنا میریشکا بو کوولکێ وان

(الايعاز للدجاج الى الخم)

**Kolmal**: Gazîya hajotina mirîşka bokalkêwan.

**کووله وار**: دەربەدەر، بازێلە، هاڤی، بەلنگاز، ژار، بێ خودان، بێ کەسی، بێ رێک

(المشرد، النازح، البائس)

**Kolewar**: Derbeder, bajêle, havî,belingaz, jar, bêxdan.

**کووله واری**: دەربە دەری، بازێلەیی، هاڤیاتی، بەلنگازی، ژاری، بێ کەسی، بێ رێکیاتی

(التشرد، النزوح، الهيمان)

**Kolewarî**: Derbederî, bajêleyî, havîyatî, belingazî, jarî, bêkesî, bêrêkîyatî.

**کووم**: گزرە، بارستە، تلخە

(الصبره، الكومه)

**Kom**: Gizre, bariste, tilxe.

**کووما مروڤا**: ئوبە، قوول‌تیپ قومرتە، لەشکەر جەلەب، جەک فەم

(القوم، الجمهور، الطائفه، العسكر، الجمع)

**Koma mrova**: Obe, qol, qumirte, leşker, celeb, vekcem.

**کووم بون**: خربون، ڤێک کەتن، قومرتەبون، ڤەجەمهان

(الاجتماع، التجمع، التجمهر، التكوم، الركام)

**Kombûn**: Xirrbûn, vêkketin, qumirtebûn, vecemhan.

**کووم بوی**: خربوی، ڤێک کەتی، قومرتە بوی، ڤەجەمهای

(المجمع، المكوم، المركم، المجمهر، المركوم)

**Kombûy**: Xirrbîy, vêkketî, qumirtebûy, vecemhay.

**کووم تر**: خرتر، ڤێک کەتی تر، قومرتە تر، ڤەجەمهان تر

(الاجمع، الاكوم، الاركم)

**Komtir**: Xirrtir, vêkketîtir, qumirtetir, vecemhan. tir.

**کووم کرن**: خرکرن، ڤێک ئێخستن، ڤەجەماندن، قومرتەکرن

(التجميع، الاجماع، التكويم، الاركام)

**Komkirin**: Xirrkirin, vêkêxistin,vecemandin. Qumirtekirin.

**کووم کری**: خرکری، ڤێک ئێخستی، ڤەجەماندی، قومرتەکری

(المجمع، المجمهر، المركم)

**Komkirî**: Xirrkiriû, vêkêxistî,vecemandî. Qumirtekirî.

**کوومی= کووماتی**: خریاتی، خربونی، خرینی، ڤەجەمهانی، قومرتەتینی، ڤێک کەتنی

(الجماعه، المجتمع، المجموع)

**Komî= Komatî**: Xirryatî, xirrbûnî, xirînî, vecemhanî, qumirtetînî, vêkketinî.

**کووم گر**: قومرتە

(اللجنه، المؤتمر)

**Komgir**: Qumirte.

**کوومان= کوومار**

(المجتمع، الجمعيه، الجمهره، الجمهوريه)

**Koman= Komar** .

کۆمەڵ= کۆمەن: خڕگەه، ڤەجەم، ڤەکێخ
(الجمعیه)
**Komel= Komîn**: Xirrgeh, vêcem, vekêx.

کۆما دەخلی: شخره، لەوده، گدیش
(العرمه)
**Koma dexlî**: Şixre, lewde, gidîş.

کۆما دانی: بارستا دانی
(الصبره، الصوبه)
**Koma danî**: Barista danî.

کۆم گرتن: قومرتە بون، خڕبون، ڤەجەمهان، ڤێک کەتن
(التجمع، الاجتماع)
**Kom girtin**: Qumirtebûn, xirrbûn, vecemhan, vêkketin.

کۆم بەستن: قومرتە بینان
(الاجتماع)
**Kom bestin**: Qumirtebînan.

کۆمانی: خڕگەهی، قومرتەیی
(المجتمع، الاجتماعی)
**Komanî**: Xirrgehî, qumirteyî.

کۆما مروڤا: ئەلالەت، گلێشوک
(الموسم)
**Koma mirova**: Elalet, gilêşok.

کۆم کەر: ڤەک ئێخ، ڤەک جەم، جەمینک
(اللامه، الضامه، الجامع)
**Komker**: Vekêx, vekcem, cemînk.

کۆنە: سەرە، قەیرە، ناڤ سالڤەچوی، پیر، کال، پوش
(العوان، الکهل)
**Kone**: Sere, qeyre, navsalveçûy, pîr, kal, poş.

کۆنە بون: سەرەبون، قەیرەبون، پیربون، کال بون، پوش بون، ناڤ سالڤەچون
(التکهل، الاکتهال)
**Konebûn**: Serebûn, qeyrebûn, pîrebûn, kalbûn, poşbûn, navsalveçûn.

کۆنە بوی: سەرەبوی، قەیرەبوی، پیربوی، کال بوی، پوش بوی، ناڤ سالڤەچوی
(المتکهل)
**Konebûy**: Serebûy, qeyrebûy, pîrebûy, kalbûy, poşbûy, navsalveçûy.

کۆنە تر: سەرەتر، قەیرەتر، پیرتر، کال تر، پوش تر، ناڤ سالڤەچوی تر
(الاکهل)
**Konetir**: Seretir, qeyretir, pîretir, kaltir, poştir, navsalveçûytir.

کۆنە کرن: سەرەکرن، قەیرەکرن، پیرکرن، کال کرن، پوش کرن ناڤ سالڤەبرن
(الاکهال، التکهیل)
**Konekirin**: Serekirin, qeyrekirin, pîrekirin, kalkirin, poşkirin, navsalvebirin.

کۆنە کری: سەرەکری، قەیرەکری، پیرکری، کال کری، پوش کری، ناڤ سالڤەبری
(المکهل)
**Konekirî**: Serekirî, qeyrekirî, pîrekirî, kalkirî, poşkirî, navsalvebirî.

کۆنەیی= کۆنەیاتی: سەرەیی، قەیرەیی، پیری، کالی، پوشی، سەرەیاتی، پیریاتی، قەیرەیاتی
(الکهوله العوانه، الشیخوخه)
**Koneyî= Koneyatî**: Sereyî, qeyreyî, pîrî, kalî, poşî, sereyatî, pîrîyatî, qeyreyatî.

کۆنە ژن: پیرەژن، قەیرەژن، کالەژن، سەرەژن
(السالفه، المسلفه)
**Konejin**: Pîrejin, qeyrejin, kalejin, serejin.

کۆنە مێر: پیرەمێر، قەیرەمێر، سەرەمێر، کالەمێر
(السالف، المسلف)
**Konemêr**: Pîremêr, qeyremêr, seremêr, kalemêr.

کوون: خیڤەت، چادر، رەش مال، خانیێ پەروکی
(الخباء، الوطاق، الفسطاط، بیت الشعر)
**Kûn**: Xivet, çadir, reşmal, xanîyê perokî.

کۆ: چنکی، چنکو
(لأن، حیث)
**Ko**: çinkî, çinko.

کۆواتی، کۆوینی: چنکییاتی، چنکۆواتی
(الحیثیه، الحیثیات)
**Kowatî= Kowînî**: Çinkîyatî, Çinkowatî.

کوو وە: چییە، چاوا، کوسا، چ
(کیف، ماذا)
**Kowe**: Çîye, çawa, kusa, çi.

# G

**گا:** نێرێ چێلا، گارەش، نێرێ حێوانێ رەش
(الثور)
**Ga:** Nêrê çêla, Gareş, Nêrê hêwanê reş.

**گاپلە:** توخمەکێ تەیرانە ژ تەخلیتێ کۆترایە بەلێ یێ گرترە ژ کۆترا رمێل
(الورشان، طائر)
**Gaple:** Tuxmekê teyrane ji texlîtê kotiraye belê yê girtire ji kotira Rimêl

**گاجۆت:** گایێ جوت کرنێ، دو گا پێکڤە گرێدان و جۆت پێ کرن
(الفدان، ثیران الفلاحه)
**Gacot:** Gayê cotkirinê, Du ga pêkve girêdan û cot pêkirin.

**گا جل:** نڤینێ نە باش، گلدێ درهای و قرێژی، نڤینێ بێ سەروبەر و نە پاک
(الفراش الرث، المنام القذر البالی)
**Gacil:** Nivînê ne baş, Gildê dirrhay û qirêjî, Nivînê bê ser û ber û nepak.

**گا چەرینک:** توخمەکێ چویچکانە
(صنف من العصفور)
**Gaçerînk:** Tuxmekê çwîçkane.

**گاران:** برا حێوانێ رەش، کەرێ گا و چێلا
(الصوار، الجول الصیار، قطیع الابقار، الجول)
Garran: Birra hêwanê reş, Kerê ga û çêla.

**گاران گولکانێ:** دەمێ پەرینا حێوانێ رەش، گوهنێلا چێل و جانیکا، بناڤک کەتن
(موسم نزوه الابقار، ثوران الثیران)
**Garrangolkanê:** Demê perrîna hêwanê reş guhnêla çêl û canîka, Binavik ketin.

**گاران گولکانێ:** بناڤک کەتن، سەربەردان، بێ رێزی
(کنایه للتسیب و الفوضی والتحلل الاجتماعی)
**Garrangolkanê:** Binavik ketin, Serberdan, Bê rêzî.

**گارت:** دەپەکێ داری یە گیا و ئالفی پێ دکێشن لسەر بەفرێ، قۆلە، کۆلە، دەپێ کێشانێ
(لوح خشبی یجلب علیه العلف فی الشتاء علی الثلج بالزحاف)
**Gart:** Depekê darî ye gîya û alifî pê dikêşin liser befrê, Qole, Kole, depê kêşanê.

**گارس:** توخمەکێ دانی یە دکەن نان و خارن
(الجاروس، الاذره الصفراء)
**Garis:** Tuxmekê danîye diken nan û xarin.

**گارسوک:** تەخلیتەکێ گیایە
(نبات عشبی)
**Garisok:** Texlîtekê gîyaye.

**گارس خورەک:** توخمەکێ چویچکایە
(صنف من العصافیر)
**Garisxwerk:** Tuxmekê çwîçkaye.

**گارانیک:** گولکێ دوسالی، گولکێ بەردەن گارانێ
(العجل عمره سنتان)
**Garranîk:** Golkê du salî, Gulkê berden garranê.

**گارینک:** ئامانەکە ددەن بەرگوییێ گا دەمێ گێرەکرنێ دا دەخل نەپیس بیت ریتن بکەڤیت
(انیه لبول الثیران اثناء الدیاسه)
**Garrînk:** Amaneke diden bergûyê ga demê gêrekirinê da dexil nepîs bît rîtin bikevît.

**کارس دەوک:** کارسێ لێنای لگەل دەوی
(طبيخ الذره مع المخيض الشنينه)
**Garisdewk:** Garisê lênay ligel dewî.

**کاسوڕە:** توخمەکێ چویچکایە
(صنف من العصافير)
**Gasurre:** Tuxmekê çwîçkaye.

**گاز:** کلبتان، ئامویرێ بزمار هەلکێشانێ
(الكماشه، الكلبتان)
**Gaz:** Kilbitan, Amwîrê bizmar helkêşanê.

**گاز:** روینێ سوتنێ
(النفط)
**Gaz:** Rwînê sotinê.

**گاز= گازۆک:** گەوری، زینی، دەلیڤە، دەلیڤێ چیای
(الفرضه، الفرجه، الحاجز للجبل)
**Gaz= Gazok:** Gewrî, Zînî, Delîve, Delîvê çîyay.

**گازی:** بانگ، خازتن
(النداء، الاذان، الدعوه)
**Gazî:** Bang, Xaztin.

**گازی بون:** بانگ بون، بانگ دان، بانگ هەلدێران
(المناداه، التصايح)
**Gazîbûn:** Bang bûy, Bang dan, Bang heldêran.

**گازی بوی:** بانگ بوی، بانگ دای، بانگ هەلدێرای، داخازکری، خازتی
(المنادى، المستدعى، المدعو)
**Gazîbûy:** Bang bûy, Bangday, Bang heldêray, Daxazkirî, xaztî.

**گازی کرن:** بانگ کرن، بانگ هەلدێران، خازتن، داخازکری
(الاستدعاء، المناداه)
**Gazîkirin:** Bangkirin, Bang heldêran, Xaztin, Daxazkirî.

**گازی کری:** خازتی، داخازکری، بانگ کری، بانگ هەلدێرای
(المدعو، المنادى)
**Gazîkirî:** Xaztî, Daxazkirî, Bangkirî, Bangheldêray.

**گازی:** قاری، قیژی، هەوار، خازتن، داخاز
(الصيحه، الصراخ، الهتاف، الدعاء)
**Gazî:** Qarî, Qîjî, Hewar, Xaztin, Daxaz.



**گاز گاز:** زمە زویرا ژ دویرڤە، لاڤ لاڤ، هیڤی کرن
(الجلبه الضوضاء البعيد، الالتماس، الترجى)
**Gazgaz:** Zimezwîra ji dwîrve, Lavlav, Hîvîkirin.

**گازی کەر:** بانگ دێر
(التداعى، المؤذمن، المنادى)
**Gazîker:** Bangdêr.

**گازی کری:** خازتی، داخازکری، بانگ کری
(المدعو، المناد اليه)
**Gazîkirî:** Xaztî, Daxazkirî, Bangkirî.

**گازیا مرنێ:** هەوارا مرنێ، بانگ هەلدێرانا مرنێ
(النعى)
**Gazîyamirnê:** Hewara mirinê, Bangheldêrana mirinê.

**گازک:** گەزک، پەل گەزک، ئامویرێ هەلگرتنا پەلێت ئاگری
(الملقط، المفأد، المشواع، الماشه، المحشه)
**Gazik:** Gezik, Pelgezik, Amwîrê helgirtina pelêt agirî.

**گازندە:** پور پور: پت پت، گلەه
(العتاب، الشكوى، التذمر، الاعتراض)
**Gazinde:** Porpor, Pitpit, Gileh.

**گازندە بون:** پور پور بون، پت پت بون، گلەهبون
(المعاتبه، الاشتكاء)
**Gazindebûn:** Porporbûn, Pitpitbûn, Gilehbûn.

**گازندە بوی:** پور پور بوی، پت پت بوی، گلەهبوی
(المشتكى، المتذمر، المعترض)
**Gazindebûy:** Porporbûy, Pitpitbûy, Gilehbûy.

**گازندە کرن:** پوراندن، پور پور کرن، پت پت کرن، گلەهکرن
(الاعتراض، الشكيه، التعتيب)
**Gazindekirin:** Porandin, Porporkirin, Pitpitkirin, Gilehkirin.

**گازندەکری:** پۆراندی، پۆرپۆرکری، پت پت کری، گلەکری.
(المعتب، المذمر)
**Gazindekirî:** Porandî, Porporkirî, Pitpitkirî, gilhekirî.

**گازندەکەر:** پور پوری، پت پتی، گلەهکار
(المعاتب، المعترض، المشتكى، المتذمر)
**Gazindeker:** Porporî, Pitpitî, Gilehkar.

**گازنده نامه:** گلەه نامە
(العريضه، الشكايه)
**Gazindename:** Gilehname.

**گاف ژەن:** پێنگاف ڕاتان، بەنگەه
(الشاو)
**Gavjen:** Pêngav ratan, Bengeh.

**گاف:** دەم، وەخت، نوكە، نهو، مابەین
(الان، الحين، المده، البرهه، الفتره، الزمن)
**Gav:** Dem, Wext, Nuke, Niho, Mabeyn.

**گاف:** پێهن گاف، باز، پێ ڕانان، لوت
(الخطوه، العفدان)
**Gav:** Pêhingav, Baz, Pêrranan, Lot.

**گافك:** پێنگافا كورت، شوین پێ لبەفرێ دیيار دبیت
(العفدان، الخطوه القصيره ويخص الثلج والاثر)
**Gavik:** Pêngava kurt, Şwîn pê libefrê dîyar dibît.

**گافا:** وەختێ، دەمێ
(حينما، بينما)
**Gava:** Wextê, Demê.

**گافا كو:** وی وەختێ كو
(حينما كان، بينما)
**Gavaku:** Wî wextê ku.

**گافەك:** بێهنەك، دەمەك
(لحظه، فی الوقت)
**Gavek:** Bêhnek, Demek.

**گاف فرهە:** پێنگاف فر
(الافج)
**Gavfirhe:** Pêngav firr.

**گاف فرەهی، گاف ڕانان:** پێنگاف فری
(الفجج)
**Gavfirehî = Gavrranan:** Pêngav firrî.

**گافان:** چۆكە دارێ حیوانا، نۆبەدارێ كارەشی، شڤانێ حیوانی
(الصوار، الجوال، الصوار راعی البقر)
**Gavan:** Çoke darê hêwana, Nobedarê gareşî, Şivanê hêwanî.

**گافانی:** چونا بەر حیوانا، سەخبێرا كارەشی و چەراندنا وان
(الصواره، الجواله، رعی البقر)
**Gavanî:** Çona ber hêwana, Sexbêra gareşî û çerandina wan.

**گا كویڤی:** دیس، توخمەكێ پەزێ كویڤی یە
(اليحمور، الايل، الثور الوحشی)
**Gakwîvî:** Dîs, Tuxmekê pezê kwîvîye.

**گا گێر:** گایێت گرێدانا سەرگێرە و بێدەرا
(ثيران الدياسه)
**Gagêr:** Gayêt girêdana sergêre û bêdera.

**گال گال = گالێن:** قار قار، قارێن، قیژ قیژ، قیژێن، بێگار، زمەزویر، هنگامە، حەشامەت
(الهرمسه، اللغط، اللغو، العربده، الجدال، الضجيج)
**Galgal = Galên:** Qarqar, Qarên, Qîjqîj, Qîjên, Bêgar, Zimzewîr, Hingame, Heşamet.

**گال:** لحێف
(اللحاف، غطاء النوم)
**Gal:** Lihêf.

**گامێش:** توخمەكێ گایە
(الجاموس)
**Gamêş:** Tuxmekê gaye.

**گان:** گوهنێل، پەرێن، تێكەلیيا لگەل ژنا
(الجماع، الزنی، الايلاج، العمل الجنسی)
**Gan:** Guhnêl, Perrên, Têkelîya ligel jina.

**گان دەه = گان دەر:** حیز، دەمان پیس، قەحبە
(الهجول، العاهر، البغی، الزانی)
**Gandeh = Gander:** Hîz, Deman pîs, Qehbe.

**گان دەهی = گان دەری:** حیزی، دەمان پیسی، قەحبەیی
(العهر، البغاء، الجهيل، الزنی)
**Gandehî = Ganderî:** Hîzî, Deman pîsî, Qehbeyî.

**گاه:** وەخت، دەم، گاف
(الوقت، الحين، الفتره، الان، المده)
**Gah:** Wext, Dem, Gav.

**گاه گاه:** دەم دەم، گاف گاف
(احيانا)
**Gahgah:** Demdem, Gav gav.

**گاه:**
(المتاع الملك، المادە(؟)
**Gah:**

**گا کویسکانێ:** یاریەکا راکێشانێ لسەر لەپا
(لعبه جر الحبل)
**Gakwîskanê:** Yarîyeka rakêşanê liser lepa.

**گەپ:** گەلتە، ترانە، یاری
(المزاح)
**Gep:** Geltc, Tirane, Yarî.

**گەدا:** ژار، بەلنگاز، خوەلی سەر، بێ کەس، خازوک
(المعتر، البائس، الشظیف، المتسول)
**Geda:** Jar, Belingaz, Xwelî ser, Bêkes, Xazok.

**گەدا بون:** ژاربون، بەلنگاز بون، خوەلی سەر بون، بێ کەس بون
(الاعتزار، الابتئاس، التشظف)
**Gedabûn:** Jarbûn, Belingazbûn, Xwelîserbûn, Bêkesbûn.

**گەدا بوی:** ژار بوی، بەلنگاز بوی، خوەلی سەر بوی، بێ کەس بوی، خازوکی بوی
(المبتئس، المشظف)
**Gedabûy:** Jarbûy, Belingazbûy, Xwelîserbûy, Bêkesbûy,Xazokîbûy.

**گەدا تر:** ژار تر، بەلنگاز تر، خوەلی سەر تر، بێ کەس تر، خازوک تر
(الاباس، الاشظف، الاسول)
**Gedatir:** Jartir, Belingaztir, Xwelîsertir, Bêkestir, Xazoktir.

**گەدا کرن:** ژار کرن، بەلنگاز کرن، خوەلی سەر کرن، بێ کەس کرن، خازوکی کرن
(الابئاس، التشظیف، الاسوال)
**Gedakirin:** Jarkirin, Belingazkirin, Xwelîserkirin, Bêkeskirin, Xazokîkirin.

**گەدا کری:** ژار کری، بەلنگاز کری، خوەلی سەر کری، بێ کەس کری
(المبئس، المشظف، المسول)
**Gedakirî:** Jarkirî, Belingazkirî, Xwelîserkirî, Bêkeskirî.

**گەدایی، گەداتی:** ژاری، بەلنگازی، خوەلی سەری، بێ کەسی، خازوکیاتی
(الشظف، البؤس، الفاقه، التسول، الاستجداء)
**Gedayî = Gedatî:** Jarî, Belingazî, Xwelîserî, Bêkesî, Xazokîyatî.

**گەدلە:** توخمەکێ مەلنگوکانە بکەزیایە گرێددەن، توخمەکێ چەکێت بکەزیایە هەلاویستنێ یە
(حلی نسائی تعلق بالضفائر والجدائل)
**Gedle:** Tuxmekê melingokane bi kezîyave girêdiden, Tuxmekê çekêt bi kezyave helawîstinêye.

**گەر:** هەکە، ئەگەر
(لو، اذا)
**Ger:** Heke, Eger

**گەڕ:** برکا ئاڤێ
(الغدیر، الحوض، البرکه)
**Gerr:** Birka avê.

**گەرماڤک:** ئاڤێت تێکەلی ئاهێت دی وەکی کبریتێ دگەرم دەرمانێ هندە ئێشانە
(الحمه یستشف بها، المیاه المعدنیه)
**Germavk:** Avêt têkelî ahêt dî wekî kiprîtê digerim dermanê hinde êşane.

**گەر:** توز، کێخمیتە، ئارک، غولپەلێل، عوڕ
(الهبر، الغبار، النثار، النخاله)
**Ger:** Toz, Kêxmîte, Arik, Xulpelêl, 'Urr.

**گەڕک:** کوڕ بەقک، برکا بچویک و کێم
(الثماد، السدیم، المستنقع)
**Gerrik:** Kurrbeqk, Birrka biçwîk û kêm.

**گەڕ:** چەرخ، گەه، زڤرین
(الدور، الشوط، النوبه، الفرصه، الشوط)
**Gerr:** Çerx, Geh, Zivirîn.

**گەرک بون:** توزبون، ئارک بون، غولپە لێل بون، عوڕبون
(التابر، التغبر، التنخل، التنثر)
**Gerikbûn:** Tozbûn, Arikbûn, Xulpelêlbûn, 'Urrbûn.

**گەرک بوی:** توز بوی، ئارک بوی، غولپە لێل بوی
(المغبر، المابر، المنخل، المنثور)
**Gerikbûy:** Tozbûy, Arikbûy, Xulpelêlbûy.

**گەرک تر:** تۆزتر، ئارک تر، کێخمیتە تر، غولپەلێل تر
(الاغبر، الانثر، الانخل)

**Geriktir:** Toztir, Ariktir, Kêxmîtetir, Xulpelêlbûy.

**گەرک کرن:** تۆز کرن، ئارک کرن، غولپەلێل کرن، عوڕ کرن
(التأبير، التغبير، الانثار، التنخيل، تعفير الكرم)

**Gerikkirin:** Tozkirin, Arikkirin, Xulpelêlkirin, 'Urrkirin.

**گەرک کری:** تۆزکری، ئارک کری، غولپەلێل کری، عوڕ کری
(المنخل، المنثر، المأبر، المغبر)

**Gerikkirî:** Tozkirî, Arikkirî, Xulpelêlkirî, Urrkirî.

**گەرکی، گەرکینی:** تۆزکی، ئارکی، غولپەلێلکی
(الاغبرار)

**Gerkî = Gerkînî:** Tozkî, Arkî, Xulpelêlkî.

**گەڕ = گەڕی:** خڕک، دورمانک، گەرینوک، بادەک، چەرخ
(الفلكه، الحلقه، اللوى، اللف، الدائره)

**Gerr = Gerrî:** Xirrik, dormank, gerînok, badek, çerx.

**گەرچە:** گوشتێ پەڕتی، گوشتێ بقەلاندنێ بهوژی
(اللحم المفتت عند القلي)

**Gerçe:** Goştê perritî, Goştê bi qelandinê bihujî.

**گەرچەن:** خەلەکا دەست هەفساری
(الزناقه، حلقه في اسفل الحنك لزمام الدواب)

**Gerçen:** Xeleka dest hefsarî.

**گەردەن:** ستو، حەفک، قڕک
(الثغر، العطل، اللبب، المكان، الرقبه)

**Gerden:** Stû, Hefik, Qirrk.

**گەردەنی:** چەکێ ژن دکەن ستویێ خوە، ستڤانک، دۆد، گردانە، تۆق
(السمط، القلاده، حلي الرقبه)

**Gerdenî:** Çekê jin diken stwîyê xwe, Stivank, Dod,Girdane, Toq.

**گەردەن ئازابون:** سەربەست بون، بەردان، سەربەردان، هەی بون، لێ بورین بون
(التصافح، تبرئه الذمه، المتحرر، العتق)

**Gerdenazabûn:** Serbestbûn, Berdan, Serberdan, Heybûn, Lêborîn.

**گەردەن ئازابوی:** سەربەست بوی، بەردای، سەربەردای بوی، هەی بوی، لێ بوری بوی
(المعفي، المبرء الذمه، المصفح عنه، المحرر، المعتق)

**Gerdenazabûy:** Serbestbûy, Berday, Serberday, Heybûy, Lêborîbûy.

**گەردەن ئازاتر:** سەربەست تر، بەردای تر، سەربەردای تر، لێ بوری تر، هەی کری تر
(الاعفى، الاصفح، الابرأ ذمه، الاحرر، الاعتق)

**Gerdenazatir:** Serbesttir, Berdaytir, Serberdaytir, Lêborîtir, Heykirîtir.

**گەردەن ئازاکرن:** سەربەست کرن، بەردان، سەربەردان کرن، هەی کرن، لێ بورین
(الاعفاء، الابراء للذمه، الاصفاح، التحرير، الاعتاق)

**Gerdenazakirin:** Serbestkirin, Berdan, serberdankirin, heykirin, lêborîn.

**گەردەن ئازاکری:** سەربەست کری، هەی کری، بەردای، سەربەردای کری
(المعفي، المبرأ الذمه، المصفح، المحرر، المعتق)

**Gerdenazakirî:** Serbestkirî, Heykirî, Berday, Serberdaykirî.

**گەردەن درێژ، گەردەن کێل:** ستو درێژ، قڕک درێژ، حەفک درێژ، ستوقیق، قڕک قیق
(العبطل)

**Gerdendirêj = Gerdenkêl:** Stûdirêj, Qirikdirêj, Hefikdirêj, Stûqîq, Qirrik qîq.

**گەردون:** چەرخ، باتیون، عەرەبانە
(الفلك الدوار، المدار، العجله، العربه)

**Gerdûn:** Çerix, Batyon, 'Erebane.

**گەرِدین:** کەلینا گوشتی، گوشت هلهلین، گوشت هەلهەورین
(النهوء، غلي اللحم)

**Geridîn:** Kelîna goştî, Goşthilhilîn,Goşthelwerîn.

**گەردی:** کەلی، هەلهەوری، هلهلی
(النهي: من اللحم)

**Geridî:** Kelî, Helhewirî, Hilhilî.

**گەرداندن:** کەلاندن، هلهلاندن، هەلهەوراندن
*(النهينه، الاغلاء، التقليه)*

**Geridandin:** Kelandin, Hilhilandin, Helhewirandin.

**گەرداندی:** کەلاندی، هلهلاندی، هەلهەوراندی

(المنهی)

**Geridandî:** Kelandî, Hilhilandî, Helhewirandî.

**گەراد:** گوشتێ کەلاندی

(النهی من اللحم)

**Gerad:** Goştê kelandî.

**گەرا داری:** توزا داری، هویرکێ داری

(النشاره)

**Gera darî:** Toza darî, Hwîrkê darî.

**گەڕی گەڕی:** لێک بادای، خرک خرک، لێک زڤری، وەربادای

(الحلزونی، اللولبی، البرغی)

**Gerrîgerrî:** Lêkbaday, Xirrik xirrik, Lêk zivirî, Werbaday.

**گەڕا دەراڤی:** تجا دەراڤی، جهێ ڤەخارنا کەوال و پەزی

(الخابیه، حوض ماء المواشی، المنهل)

**Gerra deravî:** Tica deravî, Cihê vexarina kewal û pezî.

**گەڕیدە:** مروڤێ دچەوریت، کەسێ گەلەک دگەرهیت

(العیار، الجوال، السائح، المطوف)

**Gerrîde:** Mirovê diçewirît, Kesê gelek digerhît.

**گەڕیدەیی:** چەورین، چەرخینی، ریڤینگی، کاروانیاتی

(السیاحه، الطوفان، الجولان، السیاره)

**Gerrîdeyî:** Çewirîn, Çerxînî, Rêvîngî, Karwanîyatî.

**گەرساندن:** پەرخاندن، تەڕقاندن، گڤاشتن، ڤەپیان، ڤەپان

(التلتیت، التدلیک، الکبس، التضغیط)

**Gerrisandin:** Perixandin, Terriqandin, Givaştin, Vepîyan, Vepan.

**گەرساندی:** پەرخاندی، تەڕقاندی، قەپاندی، ڤەپییای، گڤاشتی

(المضغوط، الملتت، المدلک، المکبس)

**Gerrisandî:** Perixandî, Teriqandî, Qepandî, Vepîyay, Givaştî.

**گەرسین:** پەرخین، تەڕقین، گڤشتی، ڤەپان

(اللت، الدلک، الانضغاط، الانکباس)

**Gerisîn:** Perixîn, Teriqîn, Givişti, Vepan.

**گەرسی:** پەرخی، گڤشتی، تەرقی، ڤەپییای

(الملتوت، المدلوک، المضغوط، المکبوس)

**Gerisî:** Perixî, Givişti, Teriqî, Vepîyay.

**گەروسە:** پەرەخ، گڤشک، تەڕاقە

(اللتیت، الدلیک، الدعوک)

**Gerose:** Perix, Givişk, Terraqe.

**گەرگەرانێ:** شولێ هەرچار نوبەتا ئێکی، گهگهانێ، شێل شێلانێ

(النهد، المداوله، المناوبه، التناوب)

**Gerrgerranê:** Şolê her car nobeta êkî, Gihgihanê, Şêl şêlanê.

**گەرم:** کەل، شاریای، شارهای، تێهن

(الصافر، الصهر، القیظ، القائظ، الساخن، الحار، الدافیء)

**Gerim:** Kel, Şaryay, Şarhay, Têhin.

**گەرم بون:** کەل بون، شاریان، شارهان

(التسخین، التدفیء، التصهد، التقیظ)

**Gerimbûn:** Kelbûn, Şaryan, Şarhan.

**گەرم بوی:** کەل بوی، شاریای، شارهای

(المقیظ، المسخن، المدفیء، المصهر)

**Gerimbûy:** Kelbûy, Şaryay, Şarhay.

**گەرم تر:** کەل تر، شاریای تر، شارهای تر

(الاصهر، الاقیظ، الاحر، الاسخن، الادفیء)

**Gerimtir:** Keltir, Şaryaytir, Şarhaytir.

**گەرم کرن:** کەل کرن، شاراندن

(التسخین، الادفاء، الاصهار، التقییظ)

**Gerimkirin:** Kelkirin, Şarandin.

**گەرم کری:** کەل کری، شاراندی

(المقیظ، المسخن، المدفیء، المصهر)

**Gerimkirî:** Kelkirî, Şarandî.

**گەرمی = گەرمیاتی:** کەلی، کەلیاتی، کەلاتی، شارهانی، شاریانی

(الحراره، السخونه، القیظ، الصهر، الدفیء)

**Germî = Germîyatî:** Kelî, Kelîyatî, Kelatî, Şarhanî, Şaryanî.

**گەرماڤ:** ئاڤا تێکەلی مەعدەنا، خوە دئێخنێ و پێ دشون بو ساخ بونا هندە نەساخییا

(الحمه، یستشفی بها، المیاه المعدنیه)

**Germav:** Ava têkeli me'dena, Xwe diêxnê û pê dişon bo saxbûna hinde nesaxîya.

**گەرم پیڤ:** ئامویرێ پیڤانا کەلاتیێ

(المحرار، مقیاس الحراره، الترمومتر)

**Gerimpîv:** Amwîrê pîvana kelatîyê.

گەرماڤ خوەش: شویشتن پیروزبیت، سەرشو پیروزبیت
(انعمت استحماما)
**Germavxweş**: Şwîştin pîrozbît, Serşo pîrozbît.

گەرم گەرم: کەلکەلە، شارهان، شاریان
(هیاج المعرکه، شده الحماسه)
**Gerimgerim**: Kelkele, Şarhan, Şaryan.

گەرمخین: کەلیا ناڤ خوەیی، سوتنا ژ دویرڤە، قەمخین، قەمیان
(التسخن الذاتي، تولید الحراره الذاتیه، التخمر)
**Germixîn**: Kelîya nav xweyî, Sotina ji dwîrve, Qemixîn, Qemyan.

گەرمخی: تشتێ دناڤ خوەدا گەرم بوی
(المتسخن ذاتیا، المتخمر)
**Germixî**: Tiştê dinav xweda gerim bûy.

گەرمخاندن: گەرم کرنا خوە بخوە
(التسخین)
**Germixandin**: Gerimkirina xwe bi xwe.

گەرمخاندی: تشتێ هێلای لسەر کەل بوی ئەو بخوە
(المسخن ذاتیا)
**Germixandî**: Tiştî hêlay liser kel bûy ew bixwe.

گەرمژو: مروڤێ ژ گەرمێ ئاجز دبیت، مروڤێ تێهن دژوار، زوی کەل
(سریع الحراره، للمرء)
**Germijû**: Mirovê ji germê aciz dibît, Mirovê têhin dijwar, Zwîkel.

گەرمژویی: زوی کەل بون
(سرعه التأثیر بالحراره)
**Germijûyî**: Zwîkelbûn.

گەرماتی، گەرماهی: خوین گەرمی، هەسێ
(الحماسه، الهیاج)
**Germatî = Germahî**: Xwîn germî, Hesê.

گەرم و گور: تەحرە، کەلەژان، کەل کەلە
(الوخامه، القیظ، الرمض)
**Germûgurr**: Tehre, Kelejan, Kel kele.

گەرم گرتن: لێدانا روژێ، تاڤ ژەنین
(ضربه الشمس)
**Gerimgirtin**: Lêdana rojê, Tav jenîn.

گەرما شوکرن: نماندن و شویشتنا هناڤ و سەروپیا دئاڤا گەرم دا
(غسل الحوایا والکراع وتنظیفها بعد النقع بالماء الحار)
**Germa şokirin**: Nimandin û şwîştina hinav û serûpîya di ava gerim da.

گەرمیان: جهێ کەل، ئەردێ رەش گەه و بەفر لێ نەباریت
(الجروم، الجرود، المناطق الحاره)
**Germîyan**: Cihê kel, Erdê reşgeh û befir lê nebarît.

گەرنە: هەکەنە
(لولا)
**Gerne**: Hekene

گەروسە:
(المحطم المهشم، المسحوق)
**Gerose**:

گەر و گوهنێل: دەمێ پەرینا پەزێ کویڤی
(موسم نزو الوعل والایل)
**Gerrûguhnêl**: Demê perrîna pezê kwîvî.

گەرا دیواری: رێزا نژیاری
(الساف، المداماک، الصف)
**Gerra dîwarî**: Rêza nijyarî.

گەرهان: چەرخین، چەورین، رێڤەچون
(السیر، الجولان، السیاحه، المشی)
**Gerrhan**: Çerixîn, Çewirîn, Rêveçûn.

گەرهای: چەرخی، چەوری
(السائر، الماشی، السائح، الجوال)
**Gerrhay**: Çerixî, Çewirî.

گەرهانا کولیێ: کولی بکێم و زوخ کەتن
(الاستقران، نضج الدمل)
**Gerrhana kulîyê**: Kulî bikêm û zox ketin.

گەرهان: ناڤ خوەدا چێبون بو تشتێ وەکی سهک و مەی و ریچول و تشتێ روهن
(التبلور، التعقد، للسوائل کالخل)
**Gerrhan**: Nav xweda çêbûn bo tiştê wekî sihik û mey û rîçol û tiştê rohin.

گەرومە: پرتا قورمێ داری، قەدا قورما
(القطل، القطیل، قسم من سیقان وجذوع الشجر)
**Gerome**: Pirta qurmê darî, Qeda qurma.

گەرەو: پێشڤە بی، شوین، ستوخوە گرتن

(الكفالە، العوض، الضمان، البدل، الرهن)

**Gerew:** Pêşveyî, Şwîn, Stûxwe girtin.

گەرەودار: بستوخوە گرتی، شوین گر

(الضامن، الكفيل، المعوض، المرهن، البديل)

**Gerewdar:** Bistûxwe girtî, Şwîngir.

گەرەوداری: بستوخوەگرتنی، شوین دانی

(الضمانە، التعويض، الرهينە)

**Gerwedarî:** Bistûxwe girtinî, Şwîndanî

گەریان: رێڤەچون، چەرخین، چەورین

(السير، المشي، السياحە، الجولان، الطوفان)

**Gerryan:** Rêveçûn, Çerixîn, Çewirîn.

گەریانا کولکێ: کولی بکێم و زوخ کەتن

(الاستقران، نضج الدمل)

**Gerryana kulkê:** Kulî bikêm û zox ketin.

گەریان: چێبونا دناڤ خوەدا بو تشتێ روهن وەکی سهک و مەی و ریچول و وان توخما

(التبلور للسوائل كالخل ونحوە)

**Gerryan:** Çêbûna dinav xweda bo tiştê rohin wekî sihik û mey û rîçol û wan tuxma.

گەریای: رێڤەچوی، چەرخی، چەوری، مروڤێ دنیا دیتی

(السائر، الماشي، السائح، الجوال، الطائف، المتبلور)

**Gerryay:** Rêveçuy, Çerixî, Çewirî, Mirovê dinya dîtî.

گەز: بەنگها دەستی ژ تبلا هەتا کلیلکا ملی

(الذراع)

**Gez:** Bengiha destî ji tibla hota kilîlka milî.

گەز: دارەکە لبەر ئاڤا شین دبیت وەکی هەڤرستایە

(الطرفاء، الاثل، الاسل شجرە)

**Gez:** Dareke liber ava şîn dibît, wekî, Hevristaye.

گەزتنا لەقێ: شوینا لەقدانێ

(الرزە)

**Geztina leqê:** Şwîna leqdanê.

گەزتن: پێڤەدان

(اللسع، اللدغ، اللذغ، السلم)

**Geztin:** Pêvedan.



گەزتی: پێڤەدای

(الملسوع، الملدوغ)

**Geztî:** Pêveday.

گەزک: پەل گەزک، کازک، ئامویرێ پەلا هەلگرتنێ

(المحشە، الملقط، الماشە، المشواع، المجهل)

**Gezik:** Pelgezk, Kazik, amwîrê pela helgirtinê.

گەزنگ: توخمەکێ گیایە ب مروڤی ڤەددەت، دلێنن لگەل گرارا و دقەلینن و دخون

(القراص، نبات عشبي يؤكل مطبوخا)

**Gezing:** Tuxmekê gîyaye bi mirovî ve didet, Dilênin ligel girara û diqelînin û dixon.

گەزو: شرینیەکە لبەلگێت داری دکەڤیت خرِدکەن و دخون

(المن، السلوى، من السما)

**Gezo:** Şirînîyeke libelgêt darî dikevît xir diken û dixon.

گەزوکی: نەساخییەکە دار و بار و شینکاتی دگریت و پویچ دکەت

(مرض المن للنبات)

**Gezokî:** Nesaxîyeke dar û bar û şînkatî digirît û pwîç diket.

گەزین: سوتن، ژەنین، تیژینک، ترازینک، ئێشان

(اللعج، اللفح، الوغر، المضض، المض)

**Gezîn:** Sotin, Jenîn, Tîjînk, Tirazînk, Êşan.

گەزین: ژەنین و ئێشانا ئەزمانی ژبەر تشتێ دژوار خارنێ، تام کرنا تشتێ تیژ

(الحذام، الحذوق، الحذى)

**Gezîn:** Jenîn û êşana ezmanî jiber tiştê dijwar xarnê, Tamkirina tiştê tîj.

گەزینا تەهرێ: سوتنا تەحرە و کەلە ژانێ

(الرمض، الرمضاء، حرقە القيظ)

**Gezîna tehrê:** Sotina tehre û kelejanê.

گەش: ڤەبوی، خێڤ، تەیسوک، برقوک، چرسکی، برسکی

(اللامع، النير، المتألق، المتوقد)

**Geş:** Vebûy, Xêv, Teysok, Biriqok, Çiriskî, Biriskî.

گەش: خێڤ، بشکفتی

(الفاغم، الفاغي، الناضر، الرانق، للنبات)

**Geş:** Xêv, Bişkiftî.

گەش: ڕوی شرین، کەیف خوەش، بکشوری، گرنژی، بەست
(المنشرح، المتهلل، المشرق، البشوش، للمرء)
**Geş**: Rwîşirîn, Keyf xweş, Bişkurrî, Girnijî, Best.

گەش بون: برقین، تەیسین، برسکین، چرسکین، خێڤ بون، بشکورین، بشکفتن، بەست بون
(التلمع، التوقد، التفغم، الترنق، التهلل، الانشراح، التألق)
**Geşbûn**: Biriqîn, Teyisîn, Biriskîn, Çiriskîn, Xêvbûn, Bişkurrîn, Bişkivîn, Bestbûn.

گەش بوی: برقی، چرسکی، برسکی، خێڤ بوی، بشکوری، بشکفتی، بەست بوی
(المتألق، المتوقد، المترنق، المتهلل، الملتمع)
**Geşbûy**: Biriqî, Çiriskî, Biriskî, Xêvbûy, Bişkurrî, Bişkiftî, Bestbûy.

گەش تر: برقی تر، چرسکی تر، برسکی تر، تەیسی تر، ڤەبوی تر، بەست تر، بشکفتی تر، بشکوری تر، خێڤ تر
(الالمع، الاوقد، الاشرق، الابش، الارنق، الانضر، الافغم، الاملل، الاشرح)
**Geştir**: Biriqîtir, Çiriskîtir, Teyisîtir, Vebûytir, Besttir, Bişkiftîtir, Bişkurîtir, Xêvtir.

گەش کرن: برقاندن، چرسکاندن، برسکاندن، ڤەکرن، بشکڤاندن، بشکوراندن، بەست کرن، خێڤ کرن
(التفغيم، الترنيق، التلميع، التنوير، التأليق، الانضار، الاهلال، الايقاد)
**Geşkirin**: Biriqandin, Çiriskandin, Biriskandin, Vekirin, Bişkivandin, Bişkurandin, Bestkirin, Xêvkirin.

گەش کری: برقاندی، برسکاندی، چرسکاندی، ڤەکری، خێڤ کری، بەست کری، بشکڤاندی، بشکوراندی
(الملمع، المرنق، المبشش، المهلل، المفغم، المنضر، المنور)
**Geşkirî**: Biriqandî, Biriskandî, Çiriskandî, Vekirî, Xêvkirî, Bestkirî, Bişkivandî, Bişkurandî.

گەش = گەشیاتی: برقینی، برسکینی، چرسکینی، خێڤی، بشکورینی، بشکفتنی، بەستی، ڤەبوی
(اللمعان، الالق، التوقد، الانشراح، الفغم، الفغو، النضارە، الرونق)
**Geşî = Geşîyatî**: Biriqînî, Biriskînî, Çiriskînî, Xêvî, Bişkurînî, Bişkivtî, Bestî, Vebûy.

گەشیا پەلێ: چرسکین، برسکین
(الوبش، التوبيش للجمر)
**Geşîya pelê**: Çiriskîn, Biriskîn.

گەشیا گولێ: خێڤ بون، بشکفتن، ڤەبون
(الانفتاح)
**Geşîya gulê**: Xêvbûn, Bişkivîn, Vebûn.

گەف: ناڤ دخوەدانا کرنا خرابیێ، خوڕ خوڕ
(التهديد، الوعيد)
**Gef**: Nav dixwedana kirina xirabîyê, Xurr xurr.

گەف و گوڕ: گەف دژوار و توند
(التهديد الحاد، حده التهديد)
**Gefûgurr**: Gef dijwar û tund.

گەف بون: ژڤانا دانا خرابیێ، خوڕ خوڕ بون
(التهدد، التوعد)
**Gefbûn**: Jivana dana xirabîyê, Xurr xurrbûn.

گەف کرن: خوڕ خوڕ کرن
(التهديد)
**Gefkirin**: Xurr xurrkirin.

گەف کەر: خوڕ خوڕی
(المهدد)
**Gefker**: Xurr xurrî.

گەفین: خوڕ خوڕی کار
(الهداد)
**Gefîn**: Xurr xurrîkar.

گەڤز، گەڤزک: خوەتێفە دانا ئاخێ، جهێ خوە تێفەدانا توز و ئاخێ
(المراغ، المراغه، المرغ)
**Gevz = Gevizk**: Xwe têvedana axê, Cihê xwe têvedana toz û axê.

گەڤزینا کوشتی: لێک وەرگەرهان، بزاڤا کوژتی
(السهف، النزعه)
**Gevizîna kuştî**: Lêk wergerhan, bizava kujtî.

گەڤزین: خوە دلول کرن، لێک وەرگێرانا ناڤ ئاخێ
(التمرغ، المرغ)
**Gevizîn**: Xwe dilolkirin, Lêk wergêrana nav axê.

گەڤزی: خوە دناخێ ڤەدایی، دلول کری
(المتمرغ)
**Gevizî**: Xwe di axê vedayî, Dilolkirî.

**گەڤزاندن**: دناخێ ڤەدان، لێک وەرگێران و دلول کرن
(التمريغ، الامراغ، الاسهاف، الانزاع)
**Gevizandin**: Di axê vedan, Lêk wergêran û dilolkirin.

**گەڤزاندی**: دناخێ ڤەدای و دلول گێر کری
(الممرغ، المسهف، المنزع)
**Gevizandî**: Di axê veday û dilolgêrkirî.

**گەڤوزە**: موی چرە
(الكث، الكثيث، الاشعث)
**Gevoze**: Mwî çirre.

**گەڤوزە بون**: موی چرە بون
(التكثث، التشعث)
**Gevozebûn**: Mwî çirrebûn.

**گەڤوزە بوی**: موی چرە بوی
(المتكثث، المتشعث)
**Gevozebûy**: Mwî çirrebûy.

**گەڤوزە تر**: موی چرە تر
(الاكث، الاشد شعثا)
**Gevozetir**: Mwî çirretir.

**گەڤوزە کرن**: موی چرە کرن
(الاكثاث، التكثيث، الاشعاث، التشعيث)
**Gevozekirin**: Mwî çirrekirin.

**گەڤوزە کری**: موی چرە کری
(المشعث، المكثث)
**Gevozekirî**: Mwî çirrekirî.

**گەڤوزەیی = گەڤوزەیاتی**: موی چرەیی، موی چرەیاتی
(الكثاثه، الكث، الشعث)
**Gevozeyî = Gevozeyatî**: Mwî çireyî, Mwî çireyatî.

**گەڤەگژ**: قەڤەقژ، موی گژ
(الشعان)
**Gevegij**: Qeveqij, Mwîgij.

**گەڤەگژ بون**: قەڤەقژ بون، موی گژ بون
(التشعن)
**Gevegijbûn**: Qeveqijbûn, Mwî gijbûn.

**گەڤەگژ بوی**: قەڤەقژبوی، موی گژی
(المتشعن)
**Gevegijbûy**: Qeveqijbûy, Mwîgijî.

**گەڤەگژ تر**: قەڤەقژ تر، موی گژ تر
(الاشعن)
**Gevegijtir**: Qeveqijtir, Mwîgijtir.

**گەڤەگژ کرن**: قەڤەقژ کرن، موی گژ کرن
(الاشعان، التشعين)
**Gevegijkirin**: Qeveqijkirin, Mwîgijkirin.

**گەڤەگژ کری**: قەڤەقژکری، موی گژ کری
(المشعن)
**Gevegijkirî**: Qeveqijkirî, Mwî gijkirî.

**گەڤە گژی = گەڤەگژیاتی**: قەڤەقژی، موی گژیاتی، قەڤەقژیاتی
(الشعن)
**Gevegijî = Gevegijîyatî**: Qeveqijî, Mwîgijîyatî, Qeveqijîyatî.

**گەل**: هەڤ
(مع)
**Gel**: Hev.

**گەل**: نفش، توخم، نژاد، مللەت
(الشعب، القوم، العنصر)
**Gel**: Nifş, Tuxim, Nijad, Millet.

**گەلک**: پێکڤە، بهەڤرا
(معا)
**Gelik**: Pêkve, bihevra.

**گەلکی = گەلکیاتی**: هەڤرایی، پێکڤەیی، هەڤیاتی
(المعيه)
**Gelikî = Gelikîyatî**: Hevrayî, Pêkveyî, Hevîyatî.

**گەلە = گەلەک**: زور، پر، مشە، زەحف، تژی، پتر
(الكثير، الوفير، الغزير)
**Gele = Gelek**: Zor, Pirr, Mişe, Zehif, Tijî, Pitir.

**گەلە بون**: زور بون، تژی بون، پر بون، مشە بون، زەحف بون
(التكثر، التوفر، التغزر)
**Gelebûn**: Zorbûn, Tijîbûn, Pirrbûn, Mişebûn, Zehifbûn.

**گەلە بوی**: زور بوی، تژی بوی، پر بوی، مشە بوی، زەحف بوی، پتر بوی
(الموفور، الغزير، المكثر)
**Gelebûy**: Zorbûy, Tijîbûy, Pirrbûy, Mişebûy, Zehifbûy, Pitirbûy.

**گەلە تر = گەلەک تر:** زور تر، پر تر، مشە تر، زەحف تر، تژی تر، پترتر
(الاكثر، الاوفر، الاغزر)

**Geletir = Gelektir:** Zortir, Pirrtir, Mişetir, Zehiftir, Tijîtir, Pitirtir.

**گەلە کرن:** زور کرن، مشە کرن، زەحف کرن، تژی کرن، پتر کرن، پر کرن
(الاكثار، التكثير، التوفير، الاغزار)

**Gelekirin:** Zorkirin, Mişekirin, Zehifkirin, Tijîkirin, Pitirkirin, Pirrkirin.

**گەلە کری:** زورکری، مشە کری، زەحف کری، تژی کری، پتر کری، پر کری
(المكثر، الموفر، المغزر)

**Gelekirî:** Zorkirî, Mişekirî, Zehifkirî, Tijîkirî, Pitirkirî, Pirrkirî.

**گەلەکی = گەلەیاتی:** زوری، زەحفی، مشەیی، تژیاتی، پتری، پریاتی، زەحفییاتی
(الكثره، الوفره، الغزاره)

**Gelekî = Geleyatî:** Zorî, Zehfî, Mişeyî, Tijîyatî, Pitirî, Pirryarî, Zehfîyatî.

**گەلە برس:** کولب
(السعار)

**Gelebirs:** Kulb.

**گەلە بارین:** رێژی
(المنيب)

**Gelebarîn:** Rêjî.

**گەلتە:** یاری، کەپ، ترانە، خوەلێکدان، قەلپ و قولیپانێ، حەنەک
(المداعبه بين المحبين، المصارعه، المزاح)

**Gelte:** Yarî, Kep, Tirane, Xwelêkdan, Qelip û qulîpanê, Henek.

**گەلتا ژنا:** قەلپ و قولیپانێ، حەنەک
(المداعبه، الغزل)

**Gelta jina:** Qelip û qulîpanê, Henek.

**گەلاج:** دو روی، جەنباز، جەنگەنە، یارەمەز، گەوشەک
(المنافق، المشاكس، المراوغ، المحتال، المميع)

**Gelac:** Durwî, Cenbaz, Cengene, Yaremez, Gewşek.

**گەلاج بون:** دو روی بون، جەنگەنە بون، یارەمەز بون، گەوشەک بون
(التحايل، الروغان، التنافق، التميع)

**Gelacbûn:** Durwîbûn, Cengenebûn, Yaremezbûn, Gewşekbûn.

**گەلاج بوی:** دو روی بوی، جەنگەنە بوی، یارەمەز بوی، گەوشەک بوی
(المنافق، المحتال، المراوغ)

**Gelacbûy:** Durwîbûy, Cengenebûy, Yaremezbûy, Gewşekbûy.

**گەلاج تر:** دو رویتر، جەنگەنەتر، یارەمەز تر، جەنباز تر، گەوشەک تر
(الاروغ، الامكر، الاميع)

**Gelactir:** Durwîtir, Cengenetir, Yaremeztir, Cenbaztir, Gewşektir.

**گەلاج کرن:** دو روی کرن، جەنگەنە کرن، یارەمەز کرن، جەنباز کرن، گەوشەک کرن
(التنفيق، الترويغ، الاحتيال)

**Gelackirin:** Durwîkirin, Cengenekirin, Yaremezkirin, Cenbazkirin, Gewşekkirin.

**گەلاجی = گەلاجیاتی:** دو روییاتی، جەنگەنەیی، یارەمەزی، جەنبازی، گەوشەکی
(النفاق، المراوغه، الاحتيال، الميوعه، المشاكسه، المماطله)

**Gelacî = Gelacîyatî:** Durwîyatî, Cengeneyî, Yaremezî, Cenbazî, Gewşekî.

**گەلجاندن:** گیروکرن، ڤەهێلان، ئالزاندن، پاش ئێخستن، هەزقاندن
(التمييع، الترويغ، التعويق)

**Gelicandin:** Gîrokirin, Vehêlan, Alizandin, Paşêxistin, Heziqandin.

**گەلجاندی:** گیروکری، ڤەهێلای، ئالزاندی، پاش ئێخستی، هەزقاندی
(المميع، المعوق)

**Gelicandî:** Gîrokirî, Vehêlay, Alizandî, Paşêxistî, Heziqandî.

**گەلجین:** گیروبون، ڤەمان، ئالزین، پاش کەتن، هەزقین
(الميوعه، التميع، العوق)

**Gelicîn:** Gîrobûn, Veman, Alizîn, Paşketin, Heziqîn.

**گەلچی:** گیروبوی، ڤەمای، ئالزی، هەزقی، پاش کەتی
(المعیق)
**Gelicî:** Gîrobûy, Vemay, Heziqî, Paşketî.

**گەله جا = گەله جار:** زور جار، مشە جار
(مرارا: کثیرا من المرات)
**Geleca = Gelecar:** Zorcar, Mişecar.

**گەلەچون:** پتر چون، زێدە کەل کرن
(الغلو، المغالاه)
**Geleçûn:** Pitirçûn, Zêdekelkirin.

**گەله رەنگ:** رەنگین، تێکەل رەنگ، رەنگ تێکەلی
(التهاویل، الالوان المختلفه)
**Gelereng:** Rengîn, Têkelreng, Reng têkelî.

**گەله خارن:** حەمەری، کولەفایی
(النهمه، النهامه، النهیمه)
**Gelexarin:** Hemerî, Kulefayî.

**گەله خاری:** کولەفا
(النهیم)
**Gelexarî:** Kulefa.

**گەله خوەرا:** زک بەش
(الرغاف)
**Gelexwera:** Zikbeş.

**گەله خوەری:** زک بەشی
(الرغ)
**Gelexwerî:** Zikbeşî.

**گەلەدان:** دانا زێدە
(الغدق، کثره العطاء)
**Geledan:** Dana zêde

**گەله رەنگ:** رەنگین، گول گولی
(الروبشه، الربشاء للارض)
**Gelereng:** Rengîn, Gulgulî.

**گەله زەر:** سیس
(الوعاط)
**Gelezer:** Sîs.

**گەله سپی:** کەژ
(البلق)
**Gelespî:** Kej.

**گەله شول:** پر شولی، زورخانە
(الکد)
**Geleşol:** Pirrşolî, Zorxane.

**گەلاڤێژ:** ستێرا سپێدێ
(السهیل، نجم الشعری الیمانی)
**Gelavêj:** Stêra spêdê.

**گەلڤچاندن:** قرمچاندن
(الغضن، الاذبال، الاجعاد، الدعک)
**Gelviçandin:** Qirrmiçandin.

**گەلڤچاندی:** قرمچاندی
(المدعک، المغضن، المجعد، المکمش)
**Gelviçandî:** Qirrmiçandî.

**گەلالە، گەلالتە:** بەر رەش، نهالا بەر رەش
(المسیل ذو حصو اسود)
**Gelale = Gelalte:** Ber reş, Nihala ber reş.

**گەلەک:** مشە
(العدید)
**Gelek:** Mişe.

**گەلەکی، گەلەکیاتی:** مشەیی
(العده)
**Gelekî = Gelekîyatî:** Mişeyî.

**گەله کورت:** قوت، پت
(النغاش، النغاشی)
**Gelekurt:** Qut, Pit.

**گەلگەلە:** پەرەخ، پەلەخ، بەلگێت هشک و پەرخاندی
(الغف، الهبور، الورق الیابس)
**Gelgele:** Perex, Pelex, Belgêt hişk û perixandî.

**گەلەمان پێڤە:** ڤەکێشان
(الاستغراق)
**Gelemanpêve:** Vekêşan.

**گەله مشە:** بەرفرەهی، بەرفرهەیی
(الغزیر، الوفیر)
**Gelemişe:** Berfirehî, Berfirheyî.

**گەلەن پەر:** ماقویل، برویمەت، بەرێز، رێزدار
(المحترم، الوقور، الفاضل)
**Gelenperr:** Maqwîl, birwîmet, berêz, rêzdar.

**گەلەه:** گازندە، پورپور، پت پت
(العتاب، الشکوی، العتاب، التذمر)
**Geleh:** Gazinde, Porrporr, Pitpit.

گەلەهی، گەلەهیاتی: گازندەیی، گازندەیاتی، پورپوریاتی
(المعاتبه، الاشتكاء، المعارضه)
**Gelehî = Gelehîyatî**: Gazindeyî, Gazindeyatî, Porrporrîyatî.

گەلو: ئەرێ، گەلی مروڤا
(يا، ايها، يا ايها الناس)
**Gelo**: Erê, Gelî mirova.

گەلواز: رستا ڤەهاندی، مورکێت بدویڤکڤە کری
(السلسله، النضد، المنظم، السبحه، المنضود، المنظوم، الجمله اللغويه)
**Gelwaz**: Rista vehandî, Morkêt bidwîvikve kirî.

گەلوازێ مورکا: ستڤانک
(السبحه، القلاده، العقد)
**Gelwazê morka**: Stivank.

گەلوێلە: توخمەکێ چویچکایە
(صنف من العصافير)
**Gelwêle**: Tuxmekê çwîçkane.

گەلی: گەلو
(ايها، يا ايها)
**Gelî**: Gelo.

گەلی: نهال، نال، دەرتەنگ، دەربەند
(الوادی)
**Gelî**: Nihal, Nal, Derteng, Derbend.

گەلی کویر: شیڤ کویر، نهالا کویر و تەنگ
(الفأو، الفالق، الفجاج، الجلاخ)
**Gelîkwîr**: Şîvkwîr, Nihala kwîr û teng.

گەلێشوک: قەرەبالغ
(الزحام، الهرج، الجمهور)
**Gelêşok**: Qerebalix.

گەم: ترانە، یاری، لاقدی، حەنەک
(الهزل، المزاح، اللهو، الهزء)
**Gem**: Tirrane, Yarî, Laqidî, Henek.

گەمبول: پویرت بور. کەلەخێ کورت وپان. پرموی، پرچ بور وتێکرا. گرێ گوسە
المربوع الجسم، الكثيف الشعر من الكلاب
**Gembol**: Pwîrt borr. kelexê kurt û pan. pirr mwî. pirç borr û têkrra . girê gose.

G گ

گەمبولی ؟ گەمبولیاتی: گرێ گوسەیی. پویرت بوریاتی
الكثاثه، مربوعيه الجسم
**Gembolî ? Gembolîyatî**: Girê goseyî. pwîrt borîyatî.

گەمار: قرێژ. دەرمانێ کەڤل پێ ستویرو توند وموکوم دبیت
السلم، الغرف، الدباغ، الدبغ
**Gemar**: Qirêj. dermanê kevil pê stwîr û tund û mukum dibît.

گەمار بون: کەڤل دەرمان بونا بتشتەکی وەکی شەبی ئان مازیێ ئان تیڤلێ هناری هتد
التدبغ
**Gemarbûn**: Kevil derman bûna bi tiştekî. mazîyê an tîvilê hinarê.H.T.D.

گەمار بوی: کەڤلێ گەمار گرتی
المدبغ
**Gemarbûy**: Kevlê gemar girtî.

گەمار تر: پتر گەمار کری. گەمارتر
الادبغ
**Gemartir**: Pitir gemar kirî. gemartir.

گەمار کرن: موکوم کرنا کەڤلی بدەرمانی
الادباغ، التدبيغ
**Gemarkirin**: Mukumkirina kevlî bi dermanî.

گەمار کری:کەڤلێ موکوم کری بدەرمانی
المدبغ
**Gemarkirî**: Kevlê mukumkirî bi dermanî.

گەمار گرتن: کەڤل گەمار بون. باش گەمار بون.
التدبغ، الاندباغ
**Gemagirtin**:Kevligemarbûn.başgemerbûn.

گەمورە: تاما ترش وتەحل تێکەل. تامەکا ناڤبەرا ترشی وتەحلیێ دا. شور
الاجاج، المخضرم، طعم، بين مر وحموضه، او ملوحه
**Gemore**: Tama tirş û tehil. tameka navbera tirşî û tehilyê da .şorr.

گەمورە بون: شورر بون
التأجج، التخضرم
**Gemorebûn**: Şorrbûn.

گەمورە بوی: شۆر بوی
المتخضرم، المؤجج
**Gemorebûy**: Şorrbûy.

**گەمورە تر**: شۆر تر
الانجج
**Gemoretir**: Şorrtir.

**گەمورە کرن**: شۆر کرن
التأجيج، الانجاج
**Gemorekirin**: Şorrkirin.

**گەمورە کری**: شۆر کری
المؤجه
**Gemorekirî**: Şorrkirî.

**گەمورەیی**: شووراتی. تام تەحلی وترشی تێکەل
الخضرمه، الاجابه
**Gemoreyî**: Şorratî. tam tehlî û tirşî têkel.

**گەمورە**: ناڤ چاڤ گرێ. بوغومی. نعیم ترش
الدمیم، القاطب، الصاغر الخد، المقطب، السیء الخلق
**Gemore**: Nav çav girê. bixumî. ne,îmtirş.

**گەمرین**:پەرخین
التدعیک، التکبس، الترییض، التلتت، التدلک
**Gemirîn**: Perixîn.

**گەمری**:پەرخی
المدلوک، المکبوس، الملتوت
**Gemirî**: Perixî.

**گەمراندن**: پەرخاندن
الاکباس، الالتات، الترویض، الانشاء، التفریسک، التدلیک، الالتات
**Gemirandin**: Perixandin.

**گەمراندی**: پەرخاندی
الملتت. المدلک، المکبس، المفرک، المروض، المدعک
**Gemirandî**: Perixandî.

**گەمی**: پاپور. کەشتی
السفینه، المرکب، الباخرة
**Gemî**: Paporr. geştî.

**گەمیا مەزن**:
القادس، البارجه
**Gemyamezin**: Gemyamezin.

**گەمیا بچویک**: کەلەک
القارب، الزورق، البلم
**Gemya biçwîk**: Kelek.

 گ G

**گەمی ڤان**: پاپور ڤان
الملاح، الربان
**Gemîvan**: Paporrvan.

**گەمی ڤانی**: پاپور ڤانی
الملاحه، الربانه
**Gemîvanî**: Paporrvanî.

**گەنبول**: پویرت بور وتژی. گرێ گووسە
الکثیف الشعر للکلاب المربوع الجثه
**Genbol**: Pwîrt borr û tijî. girê gose.

**گەنبولی ؟ گەنبولیاتی**: پویرت بورباتی. گرێ گووسەیی
الکثاثه، کثافه الشعر للکلب مربوعیه الجثه
**Genbolî =Genbolîyatî**: Pwîrt borrîyatî. girê goseyî.

**گەنج**: لاو. تولاز. جحێل. سنێله
الفتی، الشاب
**Genc**: Law. tolaz. cihêl. sinêle.

**گەنج**: کومچالک. هشار
الخزینه، الدفینه
**Genc**: Komçalk. hişar.

**گەنجینی، گەنجاتی**:لاوینی. تولازی. سنێلەیی. جحێلینی. جحێلی
الفتوة، الشباب
**Gencî =Gencatî**: Lawînî. tolazî. sinêleyî. cihêlînî. cihêlî.

**گەنجین**: داگرتی. ڤێک ئێخستی. کوم کری. خڕ کری
المخزون
**Gencîn**: Dagirtî. vêkêxistî. komkirî. xirrkirî.

**گەند**: گویج. قرێژ. نەشیای. کوه. دەست کورت. قر. شل
القذر، الوساخه، العاجز، القاصر
**Gend**: Gwîc. qirrêj. neşyay. koh. destkurt. qirr. şil.

**گەندی، گەندیاتی**: قری. شلی. نەشیانی. کوهی. گویجی. قرێژاتی
القذاره، الوسخ، العجز، القصر
**Gendî = Gendîyatî**: Qirrî. şilî. neşyanî. kohî gwîcî. qirrêjatî.

**گەنار**: گەنیاتی. حەفنوکاتی. پەمبلوکاتی. رزیاتی. کویفکیاتی

العفونه، السهكه، الاسن

**Genar**: Genîyatî. hefinokatî. pembilokatî rizîyatî. kwîfkîyatî.

**گەنی**: پەمبلوکی. حەفنی. رزی. کویفکی

العفن، السهك، الاسن، المسنون

**Genî**: Pembilokî. hefinî. rizî. kewfkî.

**گەنی بون**: پەمبلوکی بون. حەفنی بون. رزین. کویفکی بون

التعفن

**Genîbûn**: Pembilokîbûn. hefinîbûn. rizîn. kwîfkîbûn.

**گەنی بوی**: پەمبلوکی بوی. حەفنوکی بوی. کویفکی بوی

المتعفن

**Genîbûy**: Pembilokîbûy. hefinokîbûy. kwîfkîbûy.

**گەنی تر**: پەمبلوکی تر.کویفکی تر. حەفنوکی تر. رزی تر

الاعفن

**Genîtir**: Pembilokîtir.kwîfkîtir. hefinokîtir.

**گەنی کرن**: پەمبلوکی کرن. کویفکی کرن. حەفنوکی کرن. رزاندن. حەفنادن

الاعفان، التعفين، التكرار المبالغ في الحديث، الترديد الممل

**Genîkirin**: Pembilokîkirin.kwîfkîkirin hefinokîkirin. rizandin. hefinandin

**گەنی کری**: پەمبلوکی کری.کویفکی کری. حەفننادی. حەفنوکی کری. رزاندی

المعفن

**Genîkirî**: Pembilokîkirî.kwîfkîkirî. hefinandî. hefinokîkirî. rizandî.

**گەنیاتی**: پەمبلوکیاتی. حەفنوکیاتی. رزیاتی. کویفکیاتی

العفونه، العفن

**Kenîyatî**: Pembilokîyatî. hefinokîyatî. rizîyatî. kwîfkîyatî.

**گەنم**: دانێ نانی. دانێ سەر پشک بو نانی

القمح

**Genim**: Danê nanî. danê ser pişk bo nanî.

**گەنموک**: درایێ زەر. دانێ نانی

الاذرة، العرنوس

**Genmok**: Dirayê zer. danê nanî.

**گەنموک**:توخمەکێ گیایە

نبات عشبي

**Genmok**: Tuxmekê giyaye.

**گەنم شامی**: گەنموک

الاذرة، العرنوس

**Genimşamî**: Genmok.

**گەنی بونا هێکێ**: مەرقینا هێکێ. مەرقین

للبيض

**Genîbûna hêkê**: Meriqîna hêkê. miriqîn.

**گەنی**: حەفنی. پەمبلوکی. کویفکی

المسنون

**Genî**: Hefinî. pembilokî. kwîfkî.

**گەه**: گرێ .قولپ

العقدة، الوصل

**Geh**: Girê. qulp.

**گەه**:دەم. گاف. گاه. وەخت

الوقت، الحين، البرهه، الزمن، اللحظه

**Geh**: Dem. gav. gah. wext.

**گەه**: گەر. زاک

الدور، النوبه، الشوط

**Geh**: Ger. zak.

**گەهەشتی**: بووی. بالەتە

الواصل، البالغ، اللاحق، الناضج

**Geheştî**: Bûy. balete.

**گەهشتن**: بووی بون. بالەتە بون

النضج، الينع، البلوغ، الوصول، اللحوق، النضوج

**Geheştin**: Bûybûn. baletebûn.

**گەهاندن**: بووی کرن. بالەتە کرن

الانضاج، الايناع، الالحاق، الابلاغ، الايصال

**Gehandin**: Bûykirin. baletekirin.

**گەهاندی**: بووی کری. بالەتە کری

المبلغ، الموصل، المنضج، الملحق

**Gehandî**: Bûykirî. baletekirî.

**گەهبر**: گەر بری

قطع النوبه، تجاوز الدور

**Gehbirr**: Gerrbirr.

**گەهبری**: گەر برین

قطع دور الغير، سبق نوبه الاخر

**Gehbirrî**: Gerrbirrîn.

**گەو گەوک**: زاروکێت هویر وبچویک. ساڤا

الدعاع، العيال الصفار

**Gewgewk**: Zorokêt hwîr û biçwîk. sava.

**گەور**: **خەمر**، خوەلیکی: رەنگێ سپی ورەش ،تێکەل. شیش. بوز

الخصف، الاسمر، الادكن، الاكهب، الاقهب

**Gewir**: Xemir. xwelîkî. rengê sipî û reş têkel .şîş. boz.

**گەور بون**: خەمر بون. خوەلیکی بون .بوز بون. شیش بون. جون بون

التخصف، التكهب، التدكن، التقهب

**Gewirbûn**: Xemirbûn. xwelîkîbûn.bozbûn. şîşbûn. conbûn.

**گەور بوی**: خوەلیکی بوی . شیش بوی. بوز بوی. جون بوی

المكهوب، المقهوب، المدكن، المخصف

**Gewirbûy**: Xwelîkîbûy. şîşbûy.bozbûy. conbûy.

**گەور تر**: خوەلیکی تر. شیش تر.بوز تر. جون تر

الاخصف، الادكن

**Gewirtir**: Xwelîkîtir. şîştir. boztir. contir.

**گەور کرن**: خوەلیکی کرن. شیش کرن.بوز کرن. جون کرن

التقهيب، التدكين، الاكهاب

**Gewirkirin**: Xwelîkîkirin. şîşkirin.bozkirin. conkirin.

**گەور کری**: خوەلیکی کری. شیش کری.بوز کری. جون کری

المقهب، المخصف، المدكن

**Gewirkirî**: Xwelîkîkirî. şîşkirî.bozkirî. conkirî.

**گەوری، گەوریياتی**: جونی. بوزی. شیشی. خوەلیکی

السمرة، الدكنه، الكهبه، القهبه

**Gewirî = Gewirîyatî**: Conî. bozî. şîşî. xwelîkî.

**گەوشەک**: یارەمەز. جەنگەنە. بێ شەرم. روی ستویر

الصفيق، اللامبالي

**Gewşek**: Yaremez. cengene. bê şerim. rwîstwîr.

**گەوشەکی**: یارەمەزی. جەنگەنەیی. بێ شەرمی. روی ستویری

الصفافه، اللامبالاة

**Gewşekî**: Yaremezî. cengeneyî. bê şermî. rwîstwîrî.

**گەولین**

الدهس، الدهاس، للارض من العشب

**Gewilîn**:

**گەولین**: مژوکی بون. گەور بون. روی گرتن

النبو، الملث، الملثه بين النور والظلمه، الغبش

**Gewilîn**: Mijokîbûn. gewirbûn. rwîgirtin.

**گەولی**: روی گرتی. مژوکی. گەورەوی

النابي، المالث، الدامس

**Gewilî**: Rwî girtî. mijokî. gewirî.

**گەولین**: هەشفتن. کویری بون

الغموض، الابهام، الشوب

**Gewilîn**: Hişiftin.kwîrîbûn.

**گەولی**:هەشفتی. کویری بوی

المبهم، الغامض، المشوب، المضبب، غير المفسر

**Gewilî**: Heşiftî. kewîrîbûy.

**گەواد**: ناڤ دەستکێ ژنا خوە بو بییانی

الديوثي

**Gewad**: Nav destkê jina xwe bo bîyanî.

**گەوادی**: ناڤدەستکاتییا ژنا خوە بو خەلکی

الديوثه

**Gewadî**: Navdestkatîya jina xwe bo xelkî.

**گەورو**: ئاگر پەرێسی

المجوسي

**Gewro**: Agirperês.

**گەوران**: ئاگر پەرێسی

المجوسيه

**Gewran**: Agirperêsî.

**گەوی = گەوری**: حەفک

البلعوم، الحنجرة، الحلق

**Gewî = Gewrî**: Hefik.

**گەوریا چیایی**:گەویا چیایی: دەلیڤە. کاپە. کاپک. دەریک. گازوک

الحاجز للجبل، الفرجه، الحاجز، الفجاج، الفرضه

**Gewrîya çîyay**:Gewya çîyay Delîve. kape. kapik. derîk. gazok.

**گەویا ئاشی**: گەوریا ئاشی: کونا بەر ئاشی

الخر، الخريه، البلعه

**Gewya aşî**:Gewrîwya aşî: Kuna ber aşî.

**گەوی خر**:نەساخییەکە لگەویێ دکەڤیت. قورباجە
الخناق، مرض

**Gewîxir**: Nesaxîyeke li gewîyê di kevît. qurbace.

**گەورێ سور ڤە**: سوور چون. باڤ سوور
الصحراء، الاسمر المائل، للحمرة

**Gewrêsorve**: Sorçûn. bavsor.

**گێچ**: تەخلیتەکێ بەرایە دسووژن ودهێرن ،بەرا پێ دنژنن ودئێخن تیک وشریانێت ڕێزێت دیواری
الجص، الجبس

**Gêç**: Texlîtekê berayc disojin û dihêrin. bera pê di nijinin û êxin tîk û şiryanêt rêzêt dîwarî.

**گێچکی**: برنجێ دقوتن بو کوتلکا دبێژنێ برنجێ گێچکی
الرز، المدقوق للکبب

**Gêçkî**: Birincê diqutin bo kutilka dibêjinê birincê gêçkî.

**گێچکی**: مروڤێ بێ خیرەت وتەرموشە، یانی کەسێ بێ زڤێر و نەترو ودەلەمی
الملال، السأم، السئمان، المعجز، المضجر

**Gêçkî**: Mirovê bê xîret û teremûşe. yanî kesê bê zivêr û netro û delemî.

**گێچکیاتی**: بێ خیرەتی. تەرەموشەیی. نەترویی. دەلەمیاتی
الملال، الملل، الضجر، السأم، السامه

**Gêçkîyatî**: Bêxîretî. termûşeyî. netroyî. delemîyatî.

**گێخ**: خیر. گیر. خیچ. حیشی. تەڤلە
الخط، الوعم، السطر

**Gêx**: Xîr. gîrr. xîç. hêşî. tevle.

**گێرە**: پەلخاندنا قرشێ دەخلی بو ڤاڤارتنا دەخلی ژناڤ گلێشی
القصل، الدیاسە

**Gêre**: Pelixandina qirşê dexlî bo vavartina dexlî ji nav gilêşî.

**گێرە بون**: قرش وگلێشێ پەلخی. پەرخینا قرشێ دەخلی
التقصل للزرع، التدیس، التدرس

**Gêrebûn**: Qirş û gilêşê pelixî. perixîna qirşê dexlî.

**گێرە بوی**: قرشێ دەخلی یێ پەرخی وپەلخی
المقصل، المداس، المدروس

**Gêrebûy**: Qirşê dexlî yê perixî û pelixî.

**گێرە تر**: قرشیێ پتر پەرخی وپەلخی. پەرخی تر، پەلخی تر

**Gêretir**: Qirşîyê pitir perixî û pelixî. perixîtir. pelixîtir.

**گێرە کرن**: قرشێ پەرخاندی. گلێش پەلخاندن
الاقصال، التقصیل، التدریس

**Gêrekirin**: Qirşê perixandin. gilêş perixandin.

**گێرەکری**: قرشێ پەرخاندی، گلێشی پەرخاندی
المقصل، المدرس، المدوس

**Gêrekirî**: Qirşê perixandî. gilêş perixandî.

**گێرەڤان**: مروڤی بگێرە کرنێ رادبیت
القصال، عامل الدیاسە

**Gêrevan**: Mirovê bi gêrekirinê radibît.

**گێرە**: باشی، چاک. قەنج
الجودة، الاتقان، الاستحسان، اللائق

**Gêre**: Başî. çak. qenc.

**گێرک**: توخمەکێ مێرویێت بچویکە لقورمێت دارا ئاکنجی دبن بێهنەکا نەخوەش ژێ دهێت
السمسمە، صنف من ،النمل الصفارتتوطن الاشجار ولها ریح کریهە

**Gêrik**: Tuxmekê mêrwîyêt biçwîke li qurmêt dara akincî dibin. bêhneka nexweş jê dihêt.

**گێران**: چەرخاندن، زڤراندن، پێ رابون. لێک زڤراندن
الادارة، التسییر. التمشیە

**Gêrran**: Çerixandin. zivirandin. pêrabûn. lêkzivirandin.

**گێرای**: چەرخاندی، زڤراندی. پێ رابوی. لێک زڤراندی
المدار، المسیر

**Gêrray**: Çerixandî. zivirandî. pêrabûy. lêkzivirandî.

**گێراندن**: چەرخاندن. زڤراندن. لێک زڤراندن
التدویر، الادارة

**Gêrrandin**: Çerixandin. zivirandin. lêkzivirandin.

**گێراندی**: چەرخاندی. لێک زڤراندی. رێڤەبری
المدار، المدور، المسیر

**Gêrrandî**: Çerixandî. lêkzivirandî. rêvebirî.

